Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranekî Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 20
Juneya 2005
Biha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameyeke mehane ya siyasî û çandî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

Daxuyaniya Deftera Siyasî ya PDK Îranê derheq dawîhatina pêncemîn civîna Komîteya Navendî
Rûpela2



**Birêz Elî Mêhrperwer:**

# Ehmedînejadê Serok Komar rasterast di Şehîdkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî de dest hebûye



Aqibet gera nehem ya hilbijartina Serok Komariya Îranê hate lidarxistin û Mehmûd Ehmedînejadê terorîst bi 17 milyon dengên destçêkirî û ne rast!!! di gera duyem de ser ket û bû Serok Komarê Îslamî yê Îranê.

Me ji ber pitir balkişandina raya we xwnedevanên hêja yên **Agirî** bo ser pirsa gera nehem ya hilbijartinên Serok Komariya Îranê û rojeva siyasî ya piştî hilbijartinê bi hevalê rêzdar û xebatkar Kekê **Elî Mêhrperwer**, Endamê Deftera Siyasî yê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê re hevpeyvîneke taybet pêk anî ku di rûpela 4 bo 5'an ya vê hejmara Agirî (20) dikeve ber çavê we hêjayan.

**Wezareta Karê Derve ya Amerêka:**

## Hilbijartinên Îranê demokratîk nebûn




Adam Erlî, Cîgirê Berdevkê Wezareta Karê Derve ya Dewletên Yekbûyê yên Amerîkayê derheq birêveçûna gera nehem ya hilbijartina Serok Komariyê ji nûçegihanan re da xuya kirin ku Amerîka li ser vê baweriyê ye ku hilbijartinên gera nehem ya Serok Komariyê li Îranê demokratîk nebûn. Ji ber ku mafê bijartinê ji xelkê Îranê hatiye bertesk kirin. Bi awayekê ku berdilê xelkê Îranê nine. Wî anî ziman ku mafê demokratîk yê bijartinê ji xelkê hatiye stnadin û zevtkirin.



## Herifandina 40 avahiyên feqîr û belengazên bajarê Seqizê ji aliyên rejîmê



Şeva 06.04.1384 ( 27.06.2005 )'an, demjimêr 2 heta 5'ê sibê li taxê "Danişga" (Cada Kemerbendî) li bajarê Seqiz ji aliyê rejîmê ve 40 xanî û avahiyên welatiyên hejar û belengaz bi hêceta vê çendê ku wan bi awayê ne qanûnî ew avahiyane çêkirine, herifandin.

Pêş hilbijartina Serok Komariyê, bona vê çendê ku xelk di hilbijartinê de beşdariyê bike, izna çêkirina avahiyan ji aliyê berpirsiyarên Komara Îslamî li Seqizê di cihên qedexekirî de bi xelkê hatibû dayîn, lê piştî baykotkirina berfireh ya hilbijartinê ji aliyê xelkê ve, rayedarên dewletê bo tolhildanê dest bi herifandina vê kiryara ne mirovane kiriye û renge ew cure kiryarane dijî xelkê Kurdistanê xurtir û pitir bibin.

# Daxuyaniya Deftera Siyasî ya PDK Îranê derheq dawîhatina pêncemîn civîna Komîteya Navendî

**Hevwelatiyên birêz!**
**Xelkê xebatkar yê Kurdistanê!**

Komîteya Navendî ya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, bijartiya Kongireya sêzdehem ya Partiyê, demjimêr 10'ê pêşnîvroya roja duşemî 30'ê Cozerdana 1384'ê Rojî (20.06.2005), civîna xwe ya pêncemîn bi beşdariya hemû endamên eslî, cihgir û şêwirmendên Komîteya Navendî pêk anî. Pêncemîn civîna Komîteya Navendî bi rawestana deqeyek bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdan dest pê kir û di destpêkê de bername û destûra karê civînê (Pilînom) kete ber bas.

Piştî pesendkirina destûra karê civînê, hevalê hêja Kekê Mistefa Hicrî, Sekreterê giştî yê PDK Îranê şiroveya siyasî ya Polîtbîroya Partiyê pêşkêşî beşdarên civînê kir. Ev şirove di heyamê çend rûniştinên Pilînomê de kete ber bas û beşdarên civînê jî bi awayekî çeleng di basên têkildar yên vê şirovê pişikdarî kirin û aqibet şiroveyê de ji aliyê beşdarên civînê ve hate pesendkirin.

Di analîza Deftera Siyasî de îşare bi rewşa navneteweyî bi giştî û siyaset, helwest û têkilîyên welatên alîgirên demokrasiyê û mafên mirovan hatibû kirin û hevdengî û alîkariya navbera welatên Ewropa û Amerîkayê di pêwendî tevî berevanîkirin ji demokrasiyê û mafên mirovan bi helwesteke jêhatî di pêşdeçona demokrasiyê de hatibû nirxandin. Şiroveya Deftera Siyasî, pêvajoya bûyerên Rojhilata Navîn û guhertinên herêmê bi giştî û nemaze pêkhatina hikûmeteke gelî di Îraqa Federal de, bi gaveke din ji pêşveçona pêvajoya demokrasiyê di herêmê de nirxandibû.

Di pêwendî tevî Kurdistana Îraqê de, Pilînomê hevrefiya hêzên siyasî yên Kurdistana Îraqê, bi taybet yekdengî û alîkariya Partiya Demokrat ya Kurdistanê û Yekîtiya Nîştimanî ya Kurdistanê bi berê bingeha destkevtên Kurdan di wê parçeyê Kurdistanê de hesiband, ku bû sedema hilbijartina azad ya Parlemana Kurdistanê û Serokê Herêma Kurdistanê û bidestveanîna posta Serok Komariyê li Îraqê û gelek postên din yên girîng ji bo Kurdan. Civîna Komîteya Navendî tevî pîrozbahî ji birêz Celal Talebanî wekî Serok Komarê Îraqê û birêz Mesûd Barzanî wekî Serokê Herêma Kurdistanê, serkevtin di erk û wezîfeyên wan yên pîroz de bi hêvî xwast.



Di pêwendî tevî Îranê de şiroveya Deftera Siyasî tevî îşare pê kirin bi doma desthilata dîktator ya Komara Îslamî û ew pirsgirêkên ku rejîm di asta hundir û dereve de bi wan re rû bi rû ye, carek din li ser vê çendê tekez kir ku çi yek ji daxwazên eslî, siyasî û bingehîn yên civatên xelkê û gelên Îranê di sîstema Welayeta Feqîh ya Rejîma Komara Îslamî ya Îranê de bi cî nahê.

Şiroveya han hilbijartina gera nehem ya Serok Komariyê jî bi şanoçêkirineke din ya rejîmê hesibandibû û helwêsta civatên xelkê Îranê hemberî vê hilbijartinê û neçona wan bo ser sindoqên dengdanê helwêsteke jêhat nirxandibû.

Di vê şiroveyê de destpêkirina pêleke din ji zext û givaşanîn bo ser xelkê û serkûta azadiyan û azadîxwazan piştî hilbijartina Serok Komariya nû, pêşdîtin hatibû kirin, di heman demê de îşare bi pêvajoya xebateke berfirehtir û hevgirtîtir ya gelên Îranê hatibû kirin, her di vê derheqê de, di şiroveya Deftera Siyasî de li ser hewcehiya alîkarî û hevxebatiya hêzên siyasî yên seranserê Îranê bi giştî û hêzên siyasî yên gelên zulmlêkirî yên welatê me bi taybetî tekez hatibû kirin û nêzîkî û alîkariya herçiqas pitir û bihêztir ya wan hêzane ketibû rojevê. Her di vê çarçoveyê de pêkhatina **Kongireya Neteweyên Îrana Federal** kareke bi sûd hatibû hesibandin û li ser pêwîstiya berfirehkirina pitir û aktîv û çalakkirina vê Kongireyê tekez hatibû kirin.

Derheq rewşa Kurdistanê, şiroveya Deftera Siyasî li ser aliyên cur be cur yên jiyan û xebata xelkê Kurdistanê sekinî bû û her di vê pêwendiyê de hewcehiya alîkariyên pitir û li hev nêzîkbûna hêzên siyasî yên Kurdistana Îranê giringiyeke taybetî pêre hatibû dayîn. Di vê derheqê de Pilînomê raspêriya Deftera Siyasî kir ku hewl û bizavên xwe ji bo vê meremê bidomîne, bona vê çendê ku hêzên siyasî yên Kurdistanê bikaribin xebateke hevpar dijî Komara Îslamî ya Îranê bimeşînin, xwediyê helwêstekê bibin û bi dengekê derkevin rojevê.

Civîna Komîteya Navendî derheq bersivdana xelkê Kurdistanê seba neçûn û beşdarî nekirin di gera nehan ya hilbijartina Serok Komariyê û ew xemsariya xuya û berçav ku li hemberî vê hilbijartinê ji xwe nîşan dan, bi hewce zanî sipas û pêzanîna xwe pêşkêşî civatên xelkê Kurdistanê bike ku careke din ji vê rêyê ve bêzariya xwe ji vê rejîmê dan xuya kirin. Pilînomê ew gava xelkê Kurdistanê bi helwesteke şoreşgerane û azadîxwazane hesiband û ji xelkê Kurdistanê daxwaz kir ku di gera duyem ya vê hilbijartinê jî vê helwestê bigrin.

Di şiroveya Deftera Siyasî de li ser têkiliyên dostane û birayane yên Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê tevî hêzên Siyasî yên parên din yên Kurdistanê dubare tekez hatibû kirin û bidestxistinên gelê

Kurd li Kurdistana Îraqê bilind nirxandibû û parastina wan têkiliyane bi erkê hemû aliyekê zanî bû.

Di pareke din ji karê xwe de civîna Komîteya Navendî biryarname û gelaleya çawaniya kar û xebatên organên Partiyê li derweyî welat xiste ber bas û bi tewahiya dengan pesend kir û berpirsiyarên beşên eslî yên karên Partiyê hatin diyarî kirin.

Di pişkeke din ji karê Pilînomê û li gorî êxtiyarekê ku Kongireyê bi Komîteya Navendî dabû, du hevalên din, wekî endamên Komîteya Navendî li dereveyî welat hatin hilbijartin.

Pilînomê ji bo kemilandina endamên Deftera Siyasî ya Partiyê, hevaleke din ji endamên Komîteya Navendî wekî endamê Deftera Siyasî hilbijart.

Di para dawiyê ya karên xwe de pêncemîn civîna Komîteya Navendî lênihêrînek bi ayînnameya organên ser bi Komîteya Navendî de kir û bi hinek destêwerdanên hûr careke din ew pesend kirin.

Pilînomê bi baldan bi rewşa giştî ya herêmê û bûna pêvajoya jêhatî ji bo xebat û tekoşînê û meşandina çalakiyên pêtir, çend erkên giring û taybetî ji bo organên Partiyê destnîşan kir û ji bo cî bi cî kirina wan raspêriyên hewce dan Deftera Siyasî.

Pilînomê paş bi encamgihandina bername û destûra karê xwe, paşnîvroya roja çarşemî, 1'ê Pûşpera 1384'ê Rojî(22.06.2005) di rewşeke tejî keyfxweşî û hêvîdarbûnê de, serkeftiyane dawî bi karên xwe anî.

**Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**2'ê Pûşpera 1384**
**23.06.2005**

# 25'mîn salvegera avabûna Radyo Dengê Kurdistana Îranê hate pîroz kirin

Roja 26'ê Cozerdana 1384'ê Rojî (16.06.2005)'an, bi hinceta 25'mîn salvegera avabûna Radyo Dengê Kurdistana Îranê, rê û resmeke taybetî li binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê hate lidarxistin. Di vê rê û resmê de, Sekreterê Giştî yê Partiyê, endamên Deftera Siyasî, Komîteya Navendî û pişkeke berçav ji xebatkarên Partiyê û malbatên Pareke pişikdar bûn.

Ev rê û resme bi dengê bilûr û arma dengê Kudistana Îranê dest pê kir. Piştre hevalê xebatkar birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê seba vê hincetê axivî. Rêzdar Sekreterê Giştî di destpêka axavtina xwe de, behsa çawaniya damezirandina vê Radyoyê di 27'ê Cozerdana 1359'ê Rojî (1981) û ew asteng û girêpêçkên ku wê demê di qonaxekî sext û dijwar de berengarî vê Radyoyê bûn kir. Rêzdar Hicrî herwiha rêz ji kar û xebata wan şorişvanên ku li wê demê were hetanî niha di vê radyoyê de xebat kirine girt û bal kişande ser rola aktîv ya vê Radyoyê di tevgera azadîxwaz ya gelê Kurd, li van 25 salên derbas bûyî. Her di dirêjahiya axavtina xwe de rêzdar Sekreterê Giştî îşare bi pêşveçûna teknîk û teknolojiya vî serdemî kir û kêmasî û lawaziyên Radyoya Dengê Kurdistana Îranê di warên teknîkî ve destnîşan kir û got: Serbarê vê pêşkevtinê, lê hetanî niha jî tevî vê çendê ku Radyo Dengê Kurdistana Îranê nekariye di warê teknîkî de tevî vê teknîka pêşkevtî ya ku Komara Îslamê heye, rikeberanê biket, serfiraziyeke mezin e ku Radyo Dengê Kurdistanê yek ji çavkaniyên bawerpêkirî ya xelkê Kurd di Kurdistanê de ye ku guhdarî dikin û rêz û hezkirineke xasmanî ji bo vê radyoyê hene. Rêzdar Hicrî di dawiya axavtina xwe de carekî din tekez li ser rol û xebata tev xebatkar û birêveberên vê Radyoyê kir û ji aliyê Deftera Siyasî ve rêz ji kar, xebat û mandûbûna wan girt.

Her di doma vê rê û resmê de rêzdar Sekreterê Giştî yê Partiyê deste gulek bi nîşana rêzgirtin ji kar û tekoşîna Radyo Dengê Kurdistana Îranê pêşkêşî berpirsiyarê niha yê vê radyoyê, birêz kekê Omer Balekî, endamê Komîteya Navendî ya Partiyê kir.




Piştre rêzdar Omer Balekî di doma rê û resmê de, li ser rabihuriya kar û tekoşîna Radyoyê û hewcehiya vê Radyoyê di qonaxên herî sext û dijwar yên xebata vê Partiyê û rola berçav û xuya ya rêberê şehîd Dr. Qasimlo di avakirina vê Radyoyê de kir. Herwiha rêzdar Balekî di doma axavtina xwe de bal kişande ser taybetmendiyên vê Radyoyê di warê sadebêjî, rastbêjî, pira pêwendiya neteweya Kurd û gelên din yên Îranê, bas kirin ji bûyerên Kurdistanê û aşkirakirina cinayetên Komara Îslamî dijî gelê Kurd û hwd... .

Rêzdar berpirsiyarê Radyoyê di dawiya axavtina xwe de rol û mandîbûna rêveber û xebatkarên vê Radyoyê bilind nirxand û tekez li ser vê çendê kir û got: serbarê hemû ev cehd û tekoşîna xebatkarên Radyoyê ji bo birêveçûna bernameyên Radyoyê û cehd û tekoşîna rêberatiya Partiyê bo belavkirina van bernamane li ser setilaytê û înternetê, dîsan jî hewcehî bi pêşkevtinê ye û divêt em qebûl bikin ku Radyo di rewş û zirûfa siyasî a pir li guhartin û pêşveçûna henokeyî a Îranê, divêt liv û bizaveke zêdetir him di warê dem û him jî di warê hêza mirovî ve bi xwe ve bigire, bo vê çendê ku bikaribe bandora xwe zêdetir li ser pêvajoya bûyerên Îranê bide xuya kirin û zêdetir bala rewşenbîr û xortên welêt bo aliyê Partiyê bikişîne.

Her di dirêjahiya vê rê û resmê de peyama pîrozbahiya xebatkarên Rojnameya "Kurdistan" hate xwendin. Paşan kurte fîlmek ku Beşa Fîlm ya Partiyê bo rêzgirtin ji 25'mîn salvegera Radyo Dengê Kurdistana Îranê amade kirbû, hate nîşan dan. Ev rê û resme bi xwandina çendîn mijarên wêjeyî, herêmî, hunerî wek: helbest, pexşan û sitranan bi dawî hat.

Pîroz be 25'mîn salvegera Radyo Dengê Kurdistana Îranê.

**Birêz Elî Mêhrperwer:**

# Ehmedînejad bijartiyê Rêberê olî yê rejîmê ye, ne yê gelên Îranê

**Gera nehem ya hilbijartina Serkomariya Îslamî di Îranê de pêk hat. Di encam de bi awayekî bawerpênekirî Mehmûd Ehmedînejad bû Serok Komarê Îranê. Çi hêz û aliyekê li hundir û derve û heta civatên xelkê jî çavnihêriya vê çendê nedikirin ku Ehmedînejad bibe Serok Komar! Raya cenabê te li ser vê dozê çiye?**



Bi dîtina min bijartina Mehmûd Ehmedînejad encama hewleke pirosesa han bi diyarîkirina Ehmedînejad ji bo Serok Komariya Îranê ji aliyê Pawanxwazan ve bo qonaxeke giring derbas kiriye. Wekî me bas kir, rejîm yekdest kiriye, ji her demekê pêtir ber bi giyanê leşkergerî û Mîlîtarîzê diçe. Rejîmeke wiha îdeolojîk hewcehî bi bidestxistina çekên zaf heye. Lewre xebat ji bo bidestxistina çekên Etomî di vê dewreyê de berfirehtir dibe. Rejîm nikare bi destê vala û betal dijî pêla berdewam e ku piştî 2'ê Cozerdana sala 1376'an(1997) ji aliyê baskê Pawanxwaz ve dest pê kiribû. Heke di bîra xwendevanên hêja yên Agirî de be, çaxekê ku Xatemî 8 salan berî niha bi dengeke balkêş hate hilbijartin, baskê Pawanxwaz matmayî kir, lê ew teslîm nebûn û ser hemda xwe û di du pêvajoyan de xebat bo vê çendê kirin. **Yekem:** Pêkanîna astengan li hember guhertinxwazên hikûmetî(ne kêrhatîbûna wan bi xwe û nemaze Xatemî alîkarî dida). **Duyem:** xwerêxistin û xwe organîzekirin. Di heyamê van 8 salan de guhertinên wekî bûyera 11'ê Septemberê, Şerê Efxanistanê, hiloşîna Rejîma Bees ya Sedam Husên li Îraqê û hatina hêza leşkerî ya Rojavayiyan û bi taybet Amerîka bo herêmê û bilind kirina dirûşma azadîxwaziyê û pêşdebirina demokrasiyê û nasandina Îranê wekî tewera şeraretê(têkdan), rejîm anî ser vê baweriyê ku nikare xwe tevî vê pêvajoyê rê bixe. Ji ber vê çendê ku pêkhateya sîstema Komara Îslamî şiyana xwe rêxistin tevî demokrasiyê û liberçavgirtina mafê mirovan û azadiyên takekesî û giştî nine. Lewre dixwaze her wekî ku di destpêka avabûna xwe de bi şandina şoreşê bo derve dest pê kir û bû sebebê çêbûna pirsgirêk û arîşeyên di deverê de, her bi vî awayî jî li hember pêvajoya azadîxwaziyê bisekine. Di vê pirosesê de şexsê Xamineyî û ew organ, sazî û dezgehên ku di bin zêrevaniya Rêber de birêve diçin û xwedî îmkanat û desthilat in, roleke bingehîn lîstin. Di rastî de rejîm hêdî hêdî ber bi rejîmeke yekdest ya **Hikûmeta Îslamî** gavan davêje û em nikarin bibêjin Mehmûd Ehmedînejad ji aliyê xelkê ve hatiye hilbijartin, belkî baştir ewa ye ku em bibêjin cilê hilbijartinê li wî kirin.

**Hilbijartina Mehmûd Ehmedînejad ji bo Serok Komariya Îranê, çiqas dikare li ser siyasetên hundir û derve yên Îranê bandorê bike?**

Ez bawerim bi destpêbûna karê Ehmedînejad di posta Serok Komariyê de siyasetên navxwe û derve yên Îranê bi awayekî rohn û zelal dê pitir derkevin rojevê û dê ji wê rewşa serdemê Refsencanî û Xatemî derbikeve. Çi Refsencanî û çi jî Xatemî (di wan 16 salan de) rûçikeke wekî tem û mijê ji sîstemê nîşan dabûn û kakil û naveroka rejîmê wek eva ku heye nexuya kiribûn û wekî dibêjin rûçikê rejîmê peçavtine.

Lê Ehmedînejad rûçikê rasterast û eslî yê rejîmê çi li navxwe û çi li derve dê bide xuya kirin û eva di wateyekê de erênî ye. Teklîf û helwesta xelkê jî dê rohn be.

**Dosyeya Etomî ya Îranê di rojeva siyasî ya Îranê û Ewropayê de ye. Hilbijartina Ehmedînejad wekî keseke tundrew heta çiqas dikaribe li ser têkiliyên dîplomatîk, siyasî, aborî û... yên Îran û Ewropayê û pêşeroja bernameyên Etomî yên Îranê bandorê çê bike?**

Ez li ser vê baweriyê me ku azadîxweziyê bisekine. Rejîma Îslamî ya Îranê îdeolojî heye û dixebite ku çekên Etomî jî bidest bixe.

Lê guman tê de nine ku ji bo mijûl û bendkirina Ewropayiyan him ji îmtiyazên aborî mifahê distîne û him hemû fend û fêleke dîplomatîk ji bo bidestxistina zeman û demê û negirjkirina Ewropiyan li ser bernameyên xwe bi kar tînin. Lê herçiqas ew bibêjin hewl û xebatên wan aştîxwazane ne, derewan dikin. Çiqas Ewropî niha di helwestên xwe de micit in û li dû soz û qerarên derew yên rejîmê nakevin, rengê vê hindê dide ku vê carê ew micittir bibin.

**Di Îranê de bi giştî û bi taybetî li Kurdistanê, ev gera hilbijartinê bi awayekî berfireh hate baykot kirin. Lê serhijmêriyên rejîmê berevajî vê çendê diselimênin! Sedem çiye?**

Xelkê Îranê bi giştî bona wê ku bikarin ji rêya sindoqên dengdanê ve parek ji daxwaziyên xwe cî bi cî bikin û guhertinan di rejîmê de pêk bînin, bê hêvî bûn, lewra baweriyeke wisan bi vî awayê hilbijartinê nemaye. Wekî me dît çi di dewra yekem û çi di dewra duyem de xelkê beşdariyeke wisan nekir. Lê rejîmê bi du terzan, ji aliyekê bi holê anîna leşker û Besîciyan û şandina bi kom ya wan bo ser sindoqan û dengdan bi wan ne carekê, belkî çend caran û qerebalixkirina derdora cihên sindoqan rûmetek ji bo xapandina gel dane vê hilbijartinê, ji aliyê din jî serhejmariyeke destçêkirî û nebûyî di dîroka hilbijartinên Îranê de kir û Şêwra Nobedar jî ew pejirand.

Di vê navberê de bi rastî li Kurdistana

Îranê gel şoreşgerane liviya û helwêst girt. Gelê Kurd vê carê tenê **NE** gotin rejîmê. **BELÊ** bi tu kesekê negotin û rejîm di tevahiya xwe de ret kirin. Gelê Kurd ji mêj dem e rejîm wekî eva ku heye, nasîne. Lewre di helwestên xwe de pêşeng in.

**Piraniya Gelê Kurd li Kurdistana Îranê di vê gera hilbijartinê de beşdarî nekirin. Sedemên baykotkirina hilbijartinê ji aliyê xelkê Kurdistanê û deng nedayîna wan çi ne?**

Bê hêvîtî bi çêtirkirina rewşê di Komara Îslamî de, nasîna rejîmê, kiryarên rejîmê li Kurdistanê û Serkut û tund û tûjî û perçiqandina berdewam, bêparbûna pişkek zaf ji xelkê Kurd ji mafê xwe berbijarkirin ji bo Serok Komariyê, bêparbûna Kurdan ne tenê di rêvebirina welat de, belkî li

## Komara Îslamî ya Îranê ji bo pêşdebirina bernameyên xwe yên Etomî û tevkuj bi fend û fêlên dîplomatîk, zeman û demê ji Ewropayiyan distîne

herêma xwe jî, paşdemana aborî, bersîvnedana erênî bi hêzên siyasî yên Kurd, asta bilind ya hişyarî û agahiya siyasî û neteweyî a xelkê Kurd û hwd... hinek sebeb bûn ku xelk anî ser vê bawerê ku di hilbijartinê de beşdariyê nekin.

**Dibêjin Mehmûd Ehmedînejad di terora Şehîd Dr. Qasimlo û hevalên wî de rola eslî hebûye. Raya PDK Îranê li ser vê meseleyê çiye?**

Rejîma Komara Îslamî wekî xwe rejîmeke terorîstperwer e. Destmaye û rabihoriya keseke wekî Ehmedînejad di wê rejîmê de ew karane ne ku ji bo rejîmê kirine. Diyarîkirina terorîstekê ji bo Serok Komariya Îranê me dibe bo ser basekê ku di bersîva pirsa yekem de hate holê. Di vê qonaxê de rejîmê hewcehî bi kesên wekî Ehmedînejad heye ku bikare careke din fayla tozgirtî ya şandina şoreşê bixe rê. Wezîfeya hizbê aşkirakirin û şermezarkirina cinayetkaran e. Ya balkêş ewa ye ku 2 terorîst (Refsencanî nerasterast û Ehmedînejad rasterast di şehîdkirina Dr. Qasimlo de dest hebûn) ketibûne rikeberanê. Ji wê balkêştir ewa ye ku keseke wekî Refsencanî hêdî hêdî ji deshilatê tê vêdebirin.

**Li gorî gotinên Serokên rejîmê û piropagendeya çapemenî û ragihandina rejîmê encam û awayê birêveçûna vê gera hilbijartinê ji bo wan gelek girîng bû. Gelek xebat kirin ku xelkê bikişînin ser sindoqên dengdanê. Sedema wan nigeranî û hewlên rayedarên rejîma Îslamî ya Îranê vedigere ser çi?**

Wekî me bas kir dixwastin bi raya giştî ya cîhanê bidin xuya kirin ku di Îranê de demokrasî heye û xelk serokên xwe hildibjêrin û ewa ku Rojava dibêje, gel rejîmê naxwaze bi derew derbixin. Ji bo hilbijartina vê carê jî zêrevanên navneteweyî beşdar nebûn. Zêrevanên ser sindoqan, piranî çavdêrên Şêwra Nobedar bûn ku bi xwe amar û hejmar çêkirin û hêsankarî ji bo beşdariya çendîn car ya hêzên leşkerî û Besîcî di dengdanê de kirine. Heta berpirsiyarê giştî yê zêrevanên Wezareta Karê Hundir ji hêla çavdêrên Şêwra Nobedar ve hatiye girtin. Rejîmê 28 milyon deng ragehand, tu sazî û rêxistineke bêalî ji zêrevanên ser sindoqan nebûye, heya ku rastiyan bixe rojevê, serbarê şikayetên zaf.

**Hilbijartin yek ji bingehên demokrasiyê ye. Gelo bi giştî di çarçoveya sîstema Komara Îslamî ya Îranê de hilbijartin dikare demokratîk be?**

Di bersîva pirsa berê de me îşare bi ne demokratîkbûna bi nav hilbijartinan kir. Rejîmek dikaribe hilbijartineke demokratîk birêve bibe ku bi xwe bawerî bi demokrasiyê hebe. Xelk tenê dikarin di nava bijartiyên rejîmê de (ji hêla Şêwra Nobedar) kesekê diyarî bikin. Di halekê de ku ev piroseye jî bi duristî nameşe. Di nava wan de jî bi amarçêkirin û desttêwerdanê kesekê dikişînine serê û li ser kursiya Serok Komariyê didanên. Ne rejîm demokratîk e, ne demokrasiya rastîn di Îranê de hakim e, ne hilbijartin jî dikare demokratîk be. Sîstemek demokratîk e ku rêxistin û saziyên demokratîk tekoşînê bimeşînin û azad bibin. Demekê ku partiyên siyasî yên gel tekoşîn tu ninin, çawa hilbijartin dikare demokratîk be.

**Hûn pêşeroja Îranê di 4 salên bin rêveberiya Serok Komariya Ehmedînejad de çawa dibînin?**

Her çend li gorî Qanûna Bingehîn Serok Komar nikare roleke bibandor di rêvebirina welat de bilîze, lê ji ber vê çendê ku Ehmedînejad hilbijartiyê şexsê rêber e, di rastî de hevahengiyeke zaf bi hevre hene yan bi wateyeke din Ehmedînejad li benda fermana rêber e. Tê çavnihêrî kirin ku ew azadiya kêm û kin ya ku gel bi xwe sepandiye, ji nav biçe û serkût û dîktatorî pitir bi ser welat de zal be û rojname zêdetir ji niha bikevine bin tîxa sansorê û bihêne daxistin. Rengê wê hindê dide ku bi giştî zext û givaş bo ser xelkê û bi taybetî jinan û ciwanan pitir bibe û pêvajoyê ji bo damezirandina Hikûmeta Îslamî

## Piraniya gelê Kurd li Kurdistana Îranê di helwesteke şorşgerane de beşdarî hilbijartina Seroka Komariyê nekirin û hilbijartin baykot kirin.

amadetir bikin.

**Çima di vê gera hilbijartinê de Reformxwazek nebû Serok Komar? Gelo eva vedigere ser 8 sal kar û kiryarên Reformxwazan. Yan eva ku rêberê olî yê rejîmê û tundrewên rejîmê biryar dan ku Serok Komar jî wekî Parlemanê ji dest Reformxwazan der bixin. Hûn vê dozê çawa dibînin?**

Hereketek ku sala 1376 (1997)'an bi hilbijartina Xatemî dest pê kir û bi 2'ê Cozerdanê hate nas kirin, liv û hereketek bû ku xelk li ser vê baweriyê bû ku dikarin guhartineke wisan di rejîmê de pêk bînin ku xelk heta radeyekê qedera xwe bidestve bigirin. Lê bi çend sedeman ku di lêre de ez bi kurtî dikarim îşarê bi hinek ji wan bikim, xelk ji wê hereketê bê hêvî bûn. **Yekem**, pêkhateya vê rejîmê nikare guhartinên wisan pêk bîne ku tê de azadî û demokrasî bihêne cîgir kirin. **Duyem**, Serok Komar di sîstema Welayeta Feqîh de tevî vê çendê ku Serokê dewlet û desthilata

birêveberiyê ye, lê rola sereke Rêber e û astenga sereke jî her Rêber e. **Sêyem**, 2'ê Cozerdanê, bizaveke xwedî bername û organîzekirî nebû. Partiyên siyasî yên gelî li pişt nebûn, yan her partiyeke wisan di holê de nebû. Şexsê Xatemî tevî wê çendê ku wekî takê xwe tevî Melayên din di warê bîr û baweriyên azadîxwazane ve hinek vekirîtir bû, lê ji ber ku ne serokê ew tevgera guhartinxwazane bû û ne piştî hilbijartinê Serokatiya Îslamî girte stûyê xwe, ne wekî şexsê xwe kiryareke wisan ji xwe nîşan da ku hereketê zindî û aktîv biparêze û ne çi çaxekê pişta xwe bi hitbara xelkê girêda û xelk jî anî meydanê. **Çarem**, di heyamê wan 8 salan de di rastî de bizava 2'ê Cozerdanê bê serok bû û hêdî hêdî paşde kişiya û baskê pawanxwaz hemû destkewtek ji wan standin. Bi kurtî hêviya xelkê bi Reformxwazên Hikûmetî nema û pişta xwe dane wan.

**Ji vê qonaxê pêde û piştî vê hilbijartina nû, gelên Îranê bi giştî û gelê Kurd bi taybetî divêt çawa kar û hereketê bikin?**

Hekî ev şiroveyên ku me bas kir rast derkevin holê, di Îranê de perçiqandin de pitir bibe, serkût dê pitir bimeşe û nemaze bo ser gelên zulmlêkirî. Xwezayî ye gel taze naçine bin siya dîktatoriyê. Lewra ew dê rikeberiya xwe bikin û daxwazên wan jî dê radîkaltir bibin. Heke guhartinên di herêmê de bi qazancê azadî û demokrasiyê pêşde biçin, gelên Îranê jî bi hêviya serkevtinê ji bo daxwazên xwe dê xebatê bimeşînin û xebata xwe dê bidomînin.

**Gotina te ya dawiyê ji bo vê hevpeyvîna Agirî çiye?**

Gotina min ya dawiyê eva ye ku guhartineke mezin ber bi nemana dîktatoriyê di Îranê de bi hilbijartina Ehmedînejad hatiye holê, lê gel jî hişyartir bûye, zanîn û agahiya siyasî a gel li gor salên borî çûye jor, dewrana dîktatoriyê ber bi nemanê diçe û em jî divêt wekî berê bi serkevtinê hêvîdar bibin û di xebatê de mukimtir û bi bernametir biçine pêş û xwe tevî guhartinan rê bixin û ji astengên ser rêyê netirsin.

**Rêzdar Kekê Elî Mêhrperwer, em gelek spasiya te dikin ku te dema xwe ji bo vê hevpeyvîna Agirî veqetand.**

Ez jî pir bi dil spasiya we dikim û ji we xebatkarên Agirî re serkevtinê dixwazim û ji xwendevanên we re silav û hurmetan disînim.

# Vexwendin ji bo meşa salvegera terora nemirovane ya Dr.Qasimlo



**Bila xwîna rêberên me yên şehîd bibe meşxela xebata me ji bo bidestveanîna mafên neteweyî**

16 salan berî niha di roja 13'ê Juîyeya 1989'an de, terorîstên Komara Îslamî ya Îranê bi awayeke necamêrane Dr. Ebdulrehman Qasimlo, rêberê zana û jêhatî yê gelê Kurd û Sekreterê Giştî yê PDK Îranê di gel Kekê Ebdula Qadirî Azer endamê Komîteya Navendî ya Partiyê û birêz Fazil Resûl li Viyen a serbajarê Otrîşê teror kirin. Dewleta Otrîşê (Nemsa) bi sebeba ticaret û bazirganiyê ve ne tenê terorîst û bikujên şehîd Dr. Qasimlo negirtin û dadgehî nekirin, belkî bi hinartina wan bo Îranê bi kiryar destxweşî ji wê kiryara mirovkuj kir û bû bi hayderê Komara Îslamî bo domandina terora rêberên me û Opozîsyona Îranê. Di encamê de pitir ji 70 kes ji endamên rêxistinên Opozîsyonan tenê di welatên Yekîtiya Ewropayê de bi destê terorîstên Komara Îslamî ya Îranê hatine teror kirin, ku ji wan em dikarin îşare bi terora nemirovane ya rêberê şehîd Dr. Sadiq Şerefkendî, Sekreterê Giştî yê Partiya me û Kekê Homayûn Erdelan û Kekê Fetah Ebdolî (1992) bikin.

Niha piştî 16 salan ji wê terorê û gera nehemîn ya hilbijartina Serok Komariyê di Îranê de, hemû belge û şahid vê rastiyê didene eyanê ku aliyê kêm 3 kes ji berbijarên Serok Komariyê yanî: **Haşimî Refsencanî**, **Muhsin Rezayî** û **Mehmûd Ehmedî Nejad**, di wan terorên nemirovane de dest hebûne.

Bi hilkefta şazdehemîn salvegera vê bûyerê û ji bo şermezarkirina kiryarên terorîstî yên Komara Îslamî û mehkûmkirina siyaseta berjewendîxwazane ya Dewleta Otrîşê, Komîteya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê li welatê Finlandê roja Çarşemî 13.7.2005'an de dê meşekê li bajarê Helsînkî bo ber deriyê balyozxaneya Nemsa yê pêk bîne.

Meş demjimêr 1:30'ê piştînîvro li hember deriyê rawestgeha Şemendefirê ya "RAUTATIETNTORI" dest pê dike û demjimêr 2'ê paşnîvro li hember deriyê balyozxaneya Otrîşê civînek tê lidarxistin. Tika û daxwaza me ji hemû Kurdistaniyan û hevwelatiyan eve ye ku pişikdariyê di vê hilkeftê de bikin û bi hevgirtina refên xwe xwastikên gelê Kurd:

- Vekirina dosyeya yasayî ya wê kiryara terorîstî û dadgehîkirina darêjer û birêveberên wan cinayetane
- Daxwaza lêborîna Dewleta Otrîşê ji bo beşdarîkirin di wê kiryara nemirovane de
- Dana ziyan û xesar bi malbatên şehîdan û Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê – Komîteya Helsînkî--Finland**
**Ji bo agahiyên pêtir têkiliyê bi nav û nîşanên jêrîn bikin**:
**Tel: 00358(0)40 9103476, Fax: 0017816230744**
**www.pdk-iran.org, www.kurdistanmedia.com, www.pdki.org**
**Email: pdki_finland@yahoo.com**

# Demokrasî, buha û piratîka wê (Beşa 13)

Kurmanc Hakkî
kurmanchakki@yahoo.com



**Mafê takekes di demokrasiya mînîmal de: Lîberalîzm**

Di beşa berê de me bi kurtî di basa demokrasî di rikeberiyên hilbijartinê de li ser demokrasiya mînîmal û sîstematîk axivî. Di vê beşê de di dirêjiya beşa berê de em dê li ser mafê takekes di demokrasiya mînîmal de bipeyivin.

**Têgihîştina Lîberal Demokrat ji demokrasiyê**

Li gor teorîvan û alîgirên Lîberal Demokrat, rêz girtin ji mafê takekes û serbestiya wî, bingeha yasayîbûna dewletê ye. Bêy şirovekirina ***merema serbestiyê*** têgihîştin ji vê lîbralîzmê zehmet e. Piraniya pêvajoyên lîbralîzmê li ser serbestiya takekes e.

Li gor kilasîkên lîberalîzmê wekî: "**John Locke"** (1632 – 1704)'an, her mirovek xwediyê mafê xwedêdayî yê jiyana bi serbestî û xwedî milkiyê heye (*life, liberty and property*). Serbestî bi wateya çalakiya mirov bi awayekî jîrane û rast e.

Li gor "Locke" mirov di xwezayê de serbest û wekhev e. Pesendkirina desthilata dewletê bi awayekî dilxwaz û li gor peymanên navbera mirovan rêyeke tenê ye ku mafê desthilatdariyê bi dewletê tê de heye. Pêvajoya han bi wê wateyê tê ku hemû welatî di rewşeke siruştî de bi awayekî dilxwaz desthilata dewletê pejirandibe. Merem ji rewşa siruştî ewa ye ku carê tu dewlet û enistîtu û bingehên dewletî nehatibne damezirandin. Li hevhatina welatiyan di rewşeke sirûştî û hevalbendiya civakî de bingeha yasayî bûna dewletê û bingehên din yên desthilatdariyê ye.

Li gor "Locke" rewşa mafê siruştî yê/a mirov ne gelek tolêrans e, ji ber ku hegera wê heye ku mirovên din ji rêya kar û kiryarên xwe wê mafê ji vana bistînin û mirovan bixene bin destê xwe. Lewra mirov nabe zordariya tu kesekê bipejirîne erkê dewletê parastina mafê siruştî yê mirovan di hember gefên dijber yê mafê welatiyan e. Bi vî awayî şarowend ji bo parastina mafên xwe yên siruştî li ser desthilatdariya dewletê pêk tên.

Erka dewletê parastina mafê gel û pêşvebirina tenahiya civakî ye. Cihê baldanê ye ku di teoriya "Locke" de pesendkirina desthilata dewletê bi wateya qebûl kirina desthilata bêdawî ya dewletê nine. Erka take kesan stû xwarkirin ji bo dewletê ye bi mercekê ku mafê wana yê siruştî bê parastin û destdirêjî bi mafê wana nehê kirin. Mixabin di dîrokê de gelek dewlet û desthilat hene ku mafê mirovan binpê dikin û rêzekê ji bo wan mafane nagirin û desthilat bi awayekî nerênî tê bikar anîn. Bi vî awayî em dikaribin "Locke" bi teoriyên xwe bi feylesofê berxwedanê jî bihesibînin.

Desthilata dewletê herwiha ji rêya navend û saziyên cur be cur tê sinûrdar kirin. Hevgiriya civakî ya "Locke" pêkhatin li ser sazî û enistîtuyên cur be cur yê dewletî jî tê şirove kirin. Li gor "Locke" desthilata herî bilind ya yasadaneran e[1]. Ew alîgirê desthilata bi şêweya nûneriyê ye ku desthilatdar bo heyameke diyarî kirî hatibin hilbijartin. Yasadaneran tenê mafê wê yekê tune ye ku li ser mafê siruştî yê/a mirov biryarê bidin. Hemû babetên din divêt ji aliyê yasadaneran bê biryar dan. Di hember şaşîtiyan mafê takekesan e, dijberiya biryara yasadaneran bikin. Sinûrdar bûna dema desthilatdariyê dibe sedema wê yekê ku welatî bi dengê xwe rê ji dubare hilbijartina mirovên serberedayî bigrin. Ji ber ku yasadaner hewce naket herdem hev bibînin, hewce bi hêza birêvebir heye[1]. "Locke" alîgirê sîstemekê ye ku tê de hêza yasadaner û birêvebir ya yasayan li gor destûrekê ji hev hatibe cuda kirin.

Di destpêkê de dema darîştina destûra Dewletên Yekbûyî, wekî xuya ye yasadaner alîgirên hêla "Locke" bûne, bi taybetî di warê mafên mirov û serbestiyê de. Yasadanerên Amerîkî mîna "Locke" sinûrê Sorî yê desthilata dewletê pêpes kirina mafên xwezayî û serbestiya welatiyan diyarî kirin. Di nava avakerên Dewletên Yekbûyî de "**Jamems Madison"** mişûrê wê dixwar ku dîktatoriya zoranî nebe sedema pelixandina mafên kêmanî, bi taybetî di civakên biçûk de (di welatên bi nifûsa kêm de) tirsa wê heye ku piraniyeke hertimî bibe sebeba pêpest kirina mafên kêmaniyan. Li gor "Madîson" desthilata piranî hertim maf û serbestiya takekesan naparêze.

Di darîştina yasaya Amerîkayê de, ji bo pêşgîrî ji dîktatoriya zoranî, enistîtu û navendên cur be cur bo kontirol kirina bikaranîna desthilatê hatin pêşdîtin kirin. Yekemîn desthilata sinûrdar kirina bikar anîna desthilata Parlemana Nûnerayetiyan e ku rasterast ji aliyê xelkê ve tê hilbijartin. Astenga din li serberedayiya dewletê, dabeşkirina desthilatê bi ser sê sitûnên Yasadaner (Kongira Amerîka), Yasa Birêvebir (Serok Komar) û Çavedêra Yasa[1] (Dadigeha Dewletî). Di Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê de herwiha bûna Kongirê û Parlemana Senatoran, bikaranîna desthilatê ji aliyê Yasadaneran ve sinûrdar kiriye. Di destûra sîstema Federalî ya Dewletyên Yekbûyî de hin mikanîzm hene, ku bikaranîna desthilatê bi awayekî nerênî ji aliyê yasadaner, birêvebir û çavedêr tên sinûrdar kirin.

Di welatên demokratîk de xasmayî di Ewropayê de ev pirsyare jî heye, erê gelo di demokrasiya li ser bingeha wîsta piraniyan de tu hewceyiyek bi mikanîzmên kontrol kirina desthilata piranî heye? Li Birîtanya ku desthilat li ser bingeha piraniyê de hatiye damezirandin, **dîktatoriya piranî** jî pêş nehatiye. Ji ber ku mafê welatiyan bi awayekî rohn di yasaya welêt de hatiye nivîsandin û di

rikeberiya siyasî de hin normên pesend kirî hatine diyarî kirin.

Li gor teorî û piratîka ramyarî ya Lîberalan, damezirandin û parvekirina desthilatê li ser bingeha rêzgirtin ji mafê siruştî yê mirov e ku di destûra welat de hatiye xuya kirin û sinûrê dewletê diyarî kiriye. Herwiha helbijartina rêberan bi awayekî demokratîk dikaribe mafê welatiyan biparêze. Di hember wê ramana lîberal de bîra damezirandina dewleta mînîmal jî di vê bawerê de ye ku dewlet dikaribe mafê mirov yê siruştî biparêze, bê wê çendê ku hewce bi hilbijartinên demokratîk hebe. Nimûneyên wê jî sîstemên yek partî yên siyasî mîna: Kûba, Koreya Bakur, Sûriyê ne ku tê de hilbijartin tu ne ye û dewletên wan welatane îdiayê dikin mafê welatiyan bi awayê herî baş hatiye parastin.

Gelo rola hilbijartina demokratîk rêzgirtin ji mafê takekesan çiye? Di vê warî de du (2) şirove hene: **Lîberal û Popolîzm**. Her wek di serê de me bas kir dîtina lîberal ewa ye ku ji rêya hilbijartin û destûrê û saziyên cur be cur mafê takekes tê parastin. **Lîberal Popolîst** jî di vê baweriyê de ne ku bi hilbijartinan û biryardana bi awayê kolektîv, desthilata piranî tê cî be cî kirin. Bi vî awayî wîsta gel di sîstema birêvebir ya ji aliyê nûnerên hatî hilbijartî, dikaribin bêjin hizrek Popolîstî ye.

Me di beşên berê de basa arîşeya hilbijartina civakî û preferênsa takekes kir, ku tê de prefirênsa (hilbijartiya) takekes çawa dikaribe di dema hilbijartina kolektîv de geşe biket. Dîtina Lîberal Popolîzm bi vî awayî di hember hin pirs û rexneyan de dikeve. Diyarîkirina **wîsta piranî** ku di encama hilbijartinê de hatiye ser kar, gelek caran zehmet e. Di vê rewşê de tirsa wê çendê heye ku ew biryar û yasayên ku tên nivîsandin, bibe hegera dijheviya civakî û piraniyeke diyarî kirî, stiratêjiya xwe li ser bingeha monopol kirina nirxên civakî damezirîne.

Lewra jî Popolîsm di hilbijartinên demokratîk de cihê baweriyê nine. Dîtina han hinek teorîzanên siyasî dixe vê baweriyê ku hilbijartin tenê rê didin gel rêberên xwe bo midehek diyarîkirî hilbijêrin. Ji bilî hilbijartinê, sinûrdar kirina desthilata dewletê dikaribe ji rêya darvekirina desthilat û federalîzmê de be[1]. Bi vî awayî ji rêya hilbijartina demokratîk tevî sazî û awayên din yên kontrol kirina desthilatê mafê takekes di sîstemên demokratîk da tê parastin.

**Di hejmare tê de em dê basa yeksaniya siyasî û edaletê di piroseyên demokratîk de bikin.**

[1] قوه قضائیه.

[1] *Liberalism Against Populism: A Confrontation Between the Theory of Democracy and the Theory of Social* Choice, Illinois, Waveland Press, 1982.

Di Roja Cîhanî ya Penaberan de

# Em bihêne hawara belengaziya Kurdên penaber yên Îranî li Turkiyê û Eltaşê

**Azad Kurdî**



**Girevgirtina komek ji Penaberên Kurd yên Îranî li Wanê (Turkiyê)**

Roja 20'ê Juenê hevberî 30'ê meha Cozerdanê ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û Komîsariyaya Bilind ya karê penaberan wekî Roja Cîhaniya Penaberan hate diyarî kirin.

Li gorî serhejmêriya sala 2005'an ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî pitir ji 17 Milyon Penaber di seranserî cîhanê de hene ku di rewşeke dijwar û gelek nebaş de jînê diborînin.

Piştî serkeftina şoreşa gelên Îranê di sala 1979'an de, komek Melayên kevneperest û paşverû bi mifah standin ji seha olî ya civatên xelkê desthilat bidestve girtin û heta roja îro ku 26 sal bi ser temenê reş û tarî yê vê rejîmê derbas dibe, em dibînin ku wan çawa bi qeder û çarenivîsa gelên Îranê lîstiye. Hemû maf û azadiyeke xelkê hatiye perçiqandin û binpêkirin. Jiyana gelên Îranê di hemû warên: Siyasî, aborî, civakî, çandî û hwd... xiraptir bûye. Kar û xebata wan desthilatdarên ne hilbijartî afirandina pirsgirêkan di hemû warên jiyanê û civakê de ye. Ciwan û lawên welatê me bi sedema wan asteng û pirsgirêkan û ji bo çêkirina pêşerojeke rohn û zelal rêya xerîbî û mişextîbûnê digirin pêşiya xwe û koçberî welateke din dibin. Xelkê welatê me bi giştî û nemaze nifşa çeleng û pêşeroja civakê (Ciwan), amade ne hemû kul, derd û dijwariyên jiyana penaberiyê qebûl bikin, lê di welat û xaka xwe de ku Melayên kevneperest jiyan ji wan tehl û nezxweş kiriye, nejîn!

**Rewşa Penaberên Kurd yên Îranî li Turkiyê û Eltaşê**

Ji roja ku şoreşa gelên Îranê di sala 1979'an de serket û komek Melayan şoreş berevajî armancên wê ji rêya rast derxistin û bersiva daxwazên demokratîk û rewa yên gelê Kurd li Kurdistana Îranê bi Top, Tank, Gule û hwd ... dan. Xortên gelê Kurd ji wê demê were bê rawestiyan di xebat û hewildan ji bo bidestveanîna qedera neteweyî ya xwe nesekinîne. Ev xebate heya roja îro jî germ û gur dom dike û rêbaza azadî, demokrasî û mafên neteweyî bê rêvîng nemaye.

Ji ber vê rewşê û zulm û zordestiya rayedarên rejîma Komara Îslamî ya Îranê û siyasetên asimîlasiyon û... dijî gelê Kurd, gelek ji xortên gelê Kurd li Kurdistana Îranê neçar bûn xaka dagîrkirî ya welatê xwe bi cî bihêlin û koçberî derveyî welat bibin.

Di vê navberê de jî rewşa penaberên Îranî li Turkiyê û Eltaşê li Îraqê cihê baldanê ye. Di sala 2000-2001'an de pitir ji 1200 kes ji endamên berê yên Partî û Rêxistinên Kurdistana Îranê ku niha li Kurdistana Îraqê xebata siyasî û neteweyî ya xwe dimeşînin, xwe bi Bîroya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî li Wanê nasandin û daxwaza penaberiyê ji bo welateke sêyem kirin. EV penaberane heta niha bêcih û bersiv mane û tu bersiveke erênî bi daxwaza wan penaberên belengaz nehatiye dayîn. Ew jiyana xwe di bin kul, elem, derd û êş û janên giran diborînin.

**Dom Rûpela 11**

# Urmiye di cuxrafiya siyasî ya Kurdistanê de

**(Beşa 2 û dawî)**

**Kurmanc Hakki**
**kurmanchakki@yahoo.com**

**5. Pirsa Urmiyê di salên 1946 – 47'an de**

Di 12'ê Dêsambera 1945'an û 22'ê Janviya 1946'an û di encama rewşên navneteweyî û neteweyî yên serdema dawîhatina şerê duyem yê cîhanê, Hikûmetên Millî ya Azerbaycanê û Komara Kurdistanê pêk hatin. Her du hikûmet bi piştgiriya Yekîtiya Soviyetê ku hetanî wê demê beşa Bakura Îranê bin destê wê bû, hatine damezirandin. Ji bilî xalên hevbeş yên wan hikûmetane ku cihê basa me nine, pirsa Herêma Urmiyê yan beşa Bakura Azerbaycana Rojava yek ji pirsên mezin û giriftên yekbêj yên di navbera wan du hikûmetan de bûn û em dikaribin bi wan hegera bizanin ku bûne sebeba nebûna alîkariya micid di dema êrîşa leşkerê hikûmeta navendî bi ser Azerbaycanê û paşan jî Kurdistanê.

Wek xuya ye ji ber ku karbidestên Soviyeta berê li herêma Komara Kurdistanê û Hikûmeta Millî ya Azerbaycanê, Azeriyên Komara Azerbaycana Soviyetê bûne û seha neteweyî û şovînistiya wana yek ji sedemên tagiriya wana ji pirsgirêka hakimiyeta bajarên Urmiye, Selmas, Xoy û Miyanduavê bûye. Li benda duyem ya peymannameya navbera Hikumeta Millî ya Azerbaycanê û Komara Kurdistanê, ku Pêşewa Qazî Mihemed Serok Komarê Komara Kurdistanê û Seyîd Ceifer Pêşewerî Serokê Hikûmeta Azerbaycanê hatiye îmza kirin, wiha hatiye:

*"Li Azerbaycanê di van deverên ku piraniya rûniştvanan Kurd in, kar û barên dewletî dê bi destê Kurdan be. Herwiha li Kurdistanê ew deverên ku piraniya rûniştvanên wê Azerî bin, kar û barên dewletê dê bi destê meimûrên Hikûmeta Millî ya Azerbaycanê be."*

Ew xale cihê bal û ramaneke zor e, di rastî da li gor wê peymanê 1. Hikûmeta Azerbaycanê mafê destêwerdanê di nav kar û barên Komara Kurdistanê de bi fermî bi mafê xwe zanî ye û Serokê Komara Kurdistanê jî ew mafe îmza kiriye. 2. Ewa her di cihê xwe de nîşan dide ku Komara Kurdistan di rewşeke lawaztir de bûye û tayê terazûya Yekîtiya Soviyetê bo aliyê Hikûmeta Azerbaiyanê qursayî kiriye. Micidbûna vê meselê demekê derdikeve ku di peymana navbera Hikûmeta Millî ya Azerbaycanê û dewleta navendî, Komara Kurdistanê beşek ji Azerbaycanê tê nas kirin! Bi wî gelê Kurd ne tenê kêmaniyeke neteweyî di nava Îranê de ye, belkî bû kêmaniyeke etnîkî




di nav Azerbaycana Îranê û kesayetiya siyasî û nasnameya netewî ya wê jî hate standin. Ew kare di demekê hate encamdan ku li gor benda 5'emîn ya peymana navbera Hikûmeta Millî ya Azerbaycan û Komara Kurdistanê ku di roja 23.04.1946'an de îmza bibû: "Eger hewce be her du hikûmet dê bi razîbûna hev, gotûbêjê digel dewleta navendî ya Îranê re bikin."

**6. Demografiya Urmiyê**

Li gor statîkên dawî yên Komara Îslamî ya Îranê, hejmara rûniştvanên bajarê Urmiyê ku niha yek ji 10 bajarên mezin yê Îranê ye, 725000 kes e. Ku mirov li ber hegera nebûna serhejmêriyan di Îranê li ser bingeha zimanî û neteweyî, gelek zehmet e hejmara rûniştvanên Kurd di wî bajarî de û bajarên dine yên herêmê bizane, lê di vê de guman tune ye ku radeya Kurdan li serî %60 ji rûniştvanên herêmê ye. Ew îdaya me piştrast bi hin bûyerên siyasî yên deverê ne:

1. Di destpêka berxwedana çekdarî ya gelê Kurd di Kurdistana Îranê de bi kêmî 3 hêzên mezin yên bizava neteweyî ya Kurd li devera Urmiyê û Bakura Urmiyê bûn. Hejmara beşdariya xelkê li bizava çekdarî ya Kurdistanê di vê deverê de û di şûn da desthilata destpêkî ya herêmê bi destê bizava neteweyî rastiya Kurdistanî bûn û herwiha zêde bûna hejmara Kurdan di devera Urmiyê bi 11 beşên xwe de wê nîşan dide.
2. Li Herêma Urmiyê û li Kurdistana Îranê li gor serhejmêriyên fermî zêde bûna nifûs salê %3 e. Wate zêdeyî her derên din ji Îranê ye. Bi berçav girtina hejmara bilind ya mirin û wefata zarokan li Kurdistana Îranê û bi berçav girtina wê rastiyê ku di malbatên Kurdan de hejmara zarokan bi aweyekî siruştî zêdetir ji neteweyên din yên herêmê ne, em dikaribin şahidiyê ji bo guherîneke radîkal li demografiya deverê bi qazancê Kurdan bidin.
3. Bi sedema şerê Kurdistanê û xapûr kirina gelek gundên Kurdan û herwiha ambargoya aborî yê xelkê Kurd, hejmareke gelek zor ji xelkê gundên herêmê cîwarê bajarê Urmiyê bûne, bi şêweyekê ku niha bazar û burjovaziya biçûk ya bajarê Urmiyê Kurd pêk tînin.
4. Di hilbijartina Meclîsa Îslamî ya Îranê di sala 2000'an de, di gera yekem ya hilbijartinê de her 3 kesên ku bi nûneriya Meclîsê hatin hilbijardin, Kurd bûn. Lê bi sedema Anarşîzma Mela Hesenî û Pan Turkîst û neyariya Komara Îslamî di gel gelê Kurd, 2 kes ji nûnerên hilbijartî hatin xistin. Eger em dabinên ku beşek zor ji Azeriyên Urmiyê li ber sebeba dijayetî di gel Komara Îslamî û tundrewên nava deshilatê de deng dabin nûnerê Kurdan, lê ewa wê rastiyê jî nîşan dide ku di gel hemû hesabên matmatîk, hejmara Kurdan ji hejmara Azeriyan di vî bajarî de zêdetir in.

Li Urmiyê ji bilî Kurd û Azeriyan ku piraniya rûniştvanên herêmê pêk tînin, Asûrî, Ermenî û kêmaniyek biçûk yên Fars jî dijîn.

**7. Urmiye li Kurdistanê**

Bajarê dîrokî yê Urmiyê di serdema kevin de li ser rêya Qefqaz, Ermenîstan, Asyaya Biçûk û Mezopotamyayê hilketiye. Bar û bereketa çandinî û av û hewayê wê nirx û girîngiyeke taybetî dayiye Urmiyê.

Çûna çend Zerdeştiyan bo *Beytul-lehmê* dema ji dayîk bûna Îsa Pêxember û peyda bûna Tirba wana li Urmiyê nîşana wê yekê ye ku ew bajêre di serdemeke gelek kevin de yek ji navendên girîng yên olî (Mezhebî) û civakî bûye û serokên Împiratoriyeta Rom ji bo bidestveanîna Agirgeha mezin ya Zerdeştiyan (Azer Geşnesb) û ser bajarê (paytexta Sasaniyan (Gezna) - Textê Silêman – ji bajarê Urmiyê derbas bûne.

Urmiye di serdema desthilatdariya Turkan de di sedsala 15'an de bazareke mezin û girîng ya sinûrê desthilata Padîşahiya Îranê (Fars) û Împiratoriya Osmaniyan bûye. Lewra burc u bazarên (sûk) girîng di wê bajarê hatin ava kirin.

Urmiye her wisa cihê hevgirtina çendîn olên kevn yên mîna: Aşûrî, Ermenî, Yahûdî, Mesîhî û Mislimanên Sunî û Şîe ne . Ewa jî nirx û girîngiya wî bajarî wek navendeke pir olî (dînî) dide xuya kirin.

Yekem serhildan û bizavên neteweyî yên gelê Kurd li devera Urmiyê, serhildana Xanê Lepzêrîn di sala 1593'an de bû. Bizava Şêx Ubeydullayê Nehrî ku em dikaribin bêjin yekem bizava gelê Kurd bo serxwebûnê bû, di sala 1880'an de di vê deverê û di navbera Urmiye û bajarê Wanê de pêk hat.

Herêma Urmiyê di sedsala 19'an de şahidê serhildana bavê Nasyonalîzma Kurd li Kurdistana Îranê, Simayîl Axayê Şikak di sala 1920 – 1930'an de bûye. Di 90 salên derbasbûyî de serhildanên Eşîrên Menguran li devera Mehabadê (1929 – 30), Serhildana Celaliyan bi Serokatiya Bîrho û Ferzinde, hevdem di gel Şoreşa Agirî bi rêberiya Ihsan Nûrî Paşa. Serhildana Niho Bapîr li sala 1968 – 69'an ji aliyekê nîşana buha dana gelê Kurd bi wê deverê ye û ji aliyekî din ve pitansiyêla şoreşvanî û Kurdistanî bûna deverê didin xuya kirin. Cihê baldanê ye ku di sala 1914'an de dewleta Osmaniyan bi êrîş bo ser Urmiyê dixwast vê deverê jî bike beşek ji Împiratoriyeta xwe ku bi maytêkirina Rûsan, dagîrkirina Urmiyê bi dawî hat.




Bi baweriya me devera Urmiyê di 10 – 15 salên pêşîn de dê bibe yek ji navendên here giring û stiratêjîk.

Li civîna bilind ya Serokên Yekîtiya Ewropayê di roja 17.12.2004'an de biryar hat dan gotûbêjên fermî yên endametiya Turkiyê li Yekîtiya Ewropa di roja 3'ê Cotmeha 2005'an de dest pê bike. Wiha xuya ye ku Turkiye bi wê çarçoveya xwe ya cuxrafî bo sala 2015 – 2020 dê bibe endamê Yekîtiya Ewropa. Wê demê herêma Urmiyê dê bibe hevtixûbê Yekîtiya Ewropa û Urmiye wek mezintrîn bajarê Bakura Kurdistana Îranê dê bikeve ser rêya Yekîtiya Ewropayê, Îran, Asyaya Biçûk û Azerbaycan û Qefqazê. Di rastî de di serdema ragehandin û sedsala informasiyonê, Urmiye statûya hevgirtina şaristaniya Ewropî û Asyayî dê bi xwe bigire. Pêvajoya geşekirina Estanbolê wek pira Navbera Rojhilata Navîn û Ewropa wê baweriyê di me de bihêz dike ku di 20 salên pêşîn de Urmiye bibe Estanbola Kurdistana Îranê.

Bi vê perspektîvê xwezayî ye ku dewleta navendî ya Îranê bi alîkariya bizavên Pan Turkîst yên deverê bi hemû awayekê bixwazibin demografiya deverê biguherin û Urmiyê di cuxrafiya Kurdistanê de nehêlin.

Ava Urmiyê û paqijiya çemên herêmê her niha yê bûye çavkaniya ava vexwarina bajarên mîna Tewrêz û bajarên din yên Îranê. Av serekaniya jiyanê û yek ji hegerên here mezin ya bûyerên siyasî yên deverê ji bo me Kurdan pirsek neteweyî ye û divêt di çarçoveya stiratêjiya tenahiya neteweyî de bê mêze kirin. Bi vî awayî xuya ye ku herêma Urmiyê ji bo Kurdan buha û giraniya tenahiya neteweyî jî hebe.

**9. Divê çi bê kirin?**

Li serê me bi kurtî cihê Urmiyê di cuxrafî, dîrok, civak û bizavên neteweyî yên gelê Kurd de da xuyanî kirin. Herwiha bi awayekî abstrakt demografî û pirespektîvên çend salên pêşîn hate bas kirin. Di basa me de mijara aborî bi hegera nebûna serekanî nehatiye berbasê. Em bawer in lêkolîna rewşa aborî ya herêmê hewce bi xebateke berfirehtir û lêkolîneke kûrtir heye. Di vî warî de amaje kirin bi vê yekê bo vê gavê bes e ku di serdema Komara Kurdistanê firotina 1875000 kg Titûnê bi Soviyeta berê di vê deverê de berhem hatibû[1].

Li xezika jêrîn em dê hewcehî û pirespektîvên ji bo xebateke proaktîv û dahênane wêne bikin:

| Pêwîstiya Aborî | Pêwîstiya Siyasî | Pêwîstiya Civakî |
|---|---|---|
| • Pîlanên aborî yên Komara Îslamî ya Îranê li deverê<br>• Hewcehiya çalakkirina bizava aborî ya Kurdan li herêmê û bi taybetî bajarê Urmiyê<br>• Çalakî û pîlanên aborî yên Pan Turkîstan li deverê<br>• Destpêka hevpeyvîna endametiya Turkiyê bo YE û cihê Urmiyê di pêşroja endametiyê | • Cîgirtiya Urmiyê li cuxrafiya ramyarî ya Kurdistanê<br>• Geşekirina bizava siyasî û rewşenbîrî ya gelê Kurd di herêmê de<br>• Hewcehiya rêxistina çalakiyên takekesî û girûpî yên dereveyî welat ji bo armancên neteweyî<br>Pêkanîna diyalogeke saxlem û demokratîk jî di navbera pêkînerên civaka Urmiyê û Bakura Kurdistanê de | • Guhartinên demografîk li deverê<br>• Hewcehiya piştgiriya civaka dereveyî welat ji bizavên civakî yên herêmê<br>• Hewcehiya avakirina pêwendiyeke sîstematîk di navbera civaka derve û hundirê welat de<br>• Hewcehiya avakirina bizavên medenî |

**Erk û wezîfeyên li ser civaka Kurd li diasporayê**

- Xebat ji bo pêkanîna civak û saziyên medenî ji bo parastina nasnameya Kurdistanî ya herêma Urmiyê
- Pêkanîna girûpên lêvekolînê li ser dîrok, rewşa civakî, aborî û çandî ya deverê
- Damezirandina diyalogê di navbera kêmaniyên deverê, bo çareseriyên demokratîk ya giriftên etnîkî
- Pêkanîna pireke pêwendiyê di gel civaka Urmiyê û diyasporayê
- Girêdana pirsa Urmiyê bi pirsa aktûel ya bizava neteweyî
- Rakêşana alîkariya hêz û rêxistinên Kurdî bo alîkariya kolektîv ji bo diyarî kirina tixûbê Kurdistana Îranê.



**Mêtoda kar**

- Pêkanîna semînar, konferans û diyalogan di navbera civaka Kurd de
- Berhevkirin û weşandina babetên pêwendîdar bi dîrok, rewta ramyarî û civakî ya herêmê
- Hewildan ji bo avedan kirina çareseriyeke demokratîk û integral
- Pêkanîna girûpên karî û komîteyên elaqedar ji bo bilind kirina pirofîla Kurdistanî ya Herêma Urmiyê

Kurdistanî bûna Urmiyê bi wateya dijayetî di gel mafê meşrûi û mirovî yê rûniştvanên herêmê wek Azerî û hwd... nayê. Lê li hember hereketên Pan Turkîstan ku xebatê dikin ji bo helandin û ji holê rakirina nasnameyên nîşanên Kurdistanî yên herêmê û înkara bûna gelê Kurd wek piraniya her mezin ya deverê nabe bi navê hewildan ji bo jiyana havbeş û biratiyê bihê ji bîr kirin.

**Jêder:**


1. **Dr. Ebdulrehman Qasimlo, "Çil sal xebat le Pênawî Azadî", çapa sêyem, Kurdistan 2000**
2. **Anne Hattunen, Abdoulmajid Hakki, Iranin Kurdistan – tilanne raportti, Helsînkî 1995**
3. **Eagleton, The Kurdish Republic of 1946, London 1963**
4. **Husên Medenî, Kurdistan û Stiratêjî dewletan, bergî yekem, Stockholm 2001**
5. **Husên Medenî, "Kurdistan û Stiratêjî dewletan", berga dûyem, Stockholm 2001**
6. **Mary Lewis shedd, The Measure of Man: The life of William Ambrose Shedd, Missionary to Persia, Journal of Assyrian Academic Studies, New Yourk: George H. Doran Company, 280 pp. 1999**
7. **Michael Zirnisky, PHD., American Presbyterian Missionaries at Urmia During the Great Ware, New York, 1998**
8. **Malpera Hamşehrî, "Sar zamînê ma", www.hamshahri.org, 14.12.2004**
9. **Malpera Urmiya City, www.urmiacity.com, 15.12.2004**
10. **The Columbia Encyclopedia, Sixth Edition, 2001, http://www.bartleby.com/65/ur/Urmia.html, 14.12.2004**
11. **Urmia University, Introduction to Urmia University, www.urmia.ac.ir/intro.htm, 14.12.2004**


**(**):[1] . Sovernity**
[1] **Peymannama Hikûmeta Millî ya Azerbaycan û Dewleta Navendî Tewrêz 14.7.1946)**
(***) **Bi gor statîkên 1990 hejmara rûniştiwanên herême 2000000 kes bûye.**
[1] **. bi gor raporên sala 1995 li her 1000 zarokên Kurdistanê 120 kes berî temenê 5 salî timirin.,** ***Abdoulmajid Hakki, Anne Hattunen : Katsaus Iranin Kurdistan, Helsinki – 9/1995***
[1] بيت اللهم.
[1] ئازەرگشنسب.
[1] گەزنا.
[1] **Eagleton, The Kurdish Republic of 1946, London 1963, p. 88**

# Di Roja Cîhanî ya Penaberan de, Em bihêne hawara ...

Berpirsiyarên Rêxistina Neteweyên Yekbûyî yên taybet bi penaberan li Turkiyê çi guhertineke jêhatî û xuya di qeder û jiyana wan 1200 penaber û mişextiyên Kurd yên Îranê de pêk neanîne. %70 ji wan penaberane jin û zarok in.

Pareke din ji Kurdên penaber û mişextiyên Îranî di kampa Eltaşê de li Romadiya Îraqê dijîn. Nêzîk 30 hezar penaberên Kurd yên Îranê Di wir de di rewşeke gelek xirab û jiyaneke tejî kul û êş û belengazî diborînin. Ev Penaberane ji dema şerê Îran û Îraqê koçberî wir bûne û ji hemû maf û îmkaneke jiyana normal bêpar in. Piştî êrîşa hevalbendan bi serokatiya Amerîka û hiloşîna Rejîma Bees û dîktator ya Îraqê û hebûna şer û pevçûn û kiryarên terorîstî, penaberên Kurd yên Eltaşê dikevine ber êrîşa tund ya terorîstan û canê wan di xeterê de ye.
Parek ji wan - qasê 300 malbatan-hilatin û xwe gihandine tixûbê Urdonê û li wir di rewşeke nebaş û di belengaziyê de dijîn. Ew ji ber nebûna tenahiya canî û berdewamiya pêvajoya teror û şer û pevçûnan koçberî wir bûne. Hinek ji wan Kurdên mişextî yên Eltaşê jî piştî şerê azadiya Îraqê hatine bin deselatdariya hikûmeta Herêma Kurdistanê û di navbera bajarên Kelar û Xaneqînê de dijîn.

Di Roja Cîhanî ya Penaberan de em daxwazê ji Partî û rêxistinên pêşverû û azadîxwaz, kom û komeleyên navneteweyî yên berevankar û parêzvanên mafên mirovan û raya giştî ya cîhanê dikin ku bihêne hawara Penaberên Kurd yên Îranî li Turkiyê û Eltaşê û ji bo rizgarkirina wan penaberan gavên jêhatî û erênî bavêjin. Eva di halekê de ye ku Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ji her aliyekê pitir agehdarê rewşa jiyan û qedera wan penaberên belengaz yên kurd e. Lê mixabin ji bo wan penaberan tu gavek ne avêtiye.

# Qeza û qeder, gumanek zal di nava hundirê Jina Kurd de

**Simayîl Şerefî**

"çi bikim li min nehat", "tevî qeza û muqederê çi nahê kirin", "çi bikim qedera min jî her diviya wisan bibûya", û….

Ewane gişt ew lihevdanên wehmî ne ku jina Kurd heyanî niha serkevtinên jiyana xwe û bê îradeyiya di biryardanê de bi wê pasaw daye û li ser wê jî berdewam e bi terzekê ku jina Kurd ev çend ji xwe re kirye alavek ji bo xapandina xwe û veşartina şaşiyên ku rojane rû bi rûyî wan dibe.

Rû bi rû bûn tevî van lihevdanên bêbingeh li ser -esasa rastiyê- hetanî niha sedema sereke ya kuştina îrade û ew hêzên netirs yên hundira jina Kurd de bûne ku wekî mirov –bê newekhevî- di heyîna wê de hebûye û heye.

Cîhgirbûna nêrîn û baweriyên han di nava jinan de wisan kiriye ku cesareta niviya civakê êxsîr bikeve û ev pirsa han rê nedaye ku jin azadane bikarbin li ser pirsgirêkên xwe bifikirin û ji bo gihîştin bi hêviyên xwe gavekê ber bi pêş hilgirin. Ramana jina Kurd li ser Felsefeya **"ya**



**bûyî dê her biba"** hatiye ava kirin. Bi wateyekî rontir ew bawer e ku nikare bandorê li ser serhatiyên jiyana xwe danê û nikare wan bi awayekî din biguherîne, her ev bawere dike ku şiyan û hêza xwenîşandanê li bal jinan nenas û winda bimîne.

Zalbûna ev baweriya bi navê **Qeza û qeder** û **li nav çav hatî nivîsîn** bûye sedema dest li ser dest danan û teslîmbûn bi **qederê wisa nivîsiye**. Ev çende jî bûye sedema lawazbûna bizav û guherînê di ramanên jina Kurd de. Bi biwêrî ve em dikarin bibêjin ku heyanî niha jina Kurd –kit kit nebe- di jiyana taybetî ya xwe de nekariye baweriyê bi vê çendê bîne ku her mirovek dikare qedera xwe bi destê xwe binivîse û çawaniya awayê jiyana xwe bi destê xwe diyar bike. Wekî me got bawer anîna bi diyardeya "qeza û qederê" hêştiye ku jin nekaribin vegerin bo ser ev cesareta zatî ya xwe û bi xwe qedera xwe binivîsin. Mixabin ev bûyera han ne tenê qenaet bi qateke diyarîkirî li jinan neaniye, bigere bi hêz û qawetekî girstir pêsîrgirê keçên îroyîn yên civaka me bûye ku ev ezmûna dayîkên Kurd tiştek e ku rasterast dikeve hemberî keçan.

Bawer anîna jinan bo ev hêza mêtafîzîk, berhema hindek ji qonaxên dîrokî û rewiştên wekî gotarên asîmanî ye ku xêncî bi kole kirina jinan tu qazancekî din ji wan re nebûye û nine. Serdestbûna mêran di teblîx kirina gotarên han heyanî qasekî berbiçav û zaf ji naveroka gotaran kiriye ku jin tenê wekî bindest û kole were dîtin, ev pirosesa han wekî her pirosesekî bertesk û daxistî bi givaşa xwe dike ku gava yekemîn ji bo baweranîn bi vê çendê bihê hilgirtin. Bi wateyekî din ev baweriyên han nakin di destpêkê de xwe şirove bikin û civakê bidin nasîn û bijartin û baweriyê bikin bi meyl û daxwazekî serbest. Belkî di destpêkê de zirûf ji bo daxistin û dagîrkirina hizr û hebûna mirovan berhev dikin û bi rêya tirs û bihecibandinê, derûna mirovan pêka meyla xwe hazir dikin û piştre **mêvanê pîroz** armancên xwe li wir didin sepandin.

Ger ku em ji qewareyekî biçûk ji civakê wekî malbatê binêrin, dibînin ku gişt endamên wê girêdayî bi ev gotarên ne eqlane ne ku mirov bi bangeşe kirina wan xwe tê de dîl û berxizmet kiriye. Lênihêrîneke kûr bo nav gotarên asîmanî derdixe ku mezintirîn goriyên vê meydanê jin bûne û heyanî niha jî her jin in. Biçûk nîşandana jinan li hember zilaman û dana çarenivîsa wan bi destê zilaman, naverok û peyama ev gotarên zal û olî ne ku hêştiye derûn û viyana jinan fermanberê wan destûran bin yên ku zilam afirmendê wan e.

Ev baweriyên han bi awayekê reh û rîşeyên xwe di hundirê jina Kurd de kutaye ku ev bi xwe jî bawer in ku ya tê serê wan yan jî tînin serê wan, berheq e û xêncî wê gunehekî mezin e. Her ev baweriya han wisan lê kiriye ku jina Kurd cesaret û yaxîgeriyên di nava xwe de bifetisîne û bibe fermanberê destekî zal li ser qeder û çarenivîsa xwe.

# Lênihêrînek li ser dîroka tevgera jinan

**Hemîd Muxtarî**

Rewşa civakî ya jinan di her civakekê de nîşaneya rewşa giştî û asta pêşdeçona siyasî û civakî ya wê civakê ye, lewre pêşketin di her civakekê de bidestveanîna maf û azadiyên jinan, ji pêwendiyên malbatî ve bigre hata ku digihîje parvekirina kar di civakê de desteber diket.

Di rastî de xebata jinan ji bo bidestveanîna mafên wekhev derbasbûyekî bi qasî dîroka nivîskî ya mirov heye. Lê dîroknivîs serbarê hebûna bîr û rayên cur be cur, hertim di warekê de hevfikir bûne û ew jî ne dîtina tiştekê ye ku pêwendî bi jinê ve heye. Bo mînak di pirtûkên dîrokî de derheq dîroka sedsala navîn, yanî ji sedsala 14'an hetanî 17'an ya Zayînî bi hûrî li ser desthilatdariya Kilîsayan wekî mezintirîn xwedî erd, derbarê rewşa nebaş ya Cotkaran, Engîzasyon, şerên sedsale û...hatiye nivîsandin, lê îşareyeke wisan bi rewşa jinan nehatiye kirin.

Di bingeh de pêşketina hiqûqî ya jinan di warên siyasî û civakî di hinek ji deverên Ewropayê de yek ji sebebkarên tepeseriya jinan bû. Ev mafane navhatî bûn ji: Ji navçûna mafê firotin û kuştina Jinan ji aliyê Mêran ve, mafê avakirina saziyên aborî, mafê malikbûnê, mafê wesiyetê, mafê girêdana rêketinnameyan û beşdariya jinan di kar û barên ticarî de hatanî sala 1450'an bû.

Tevaya van mafan ji aliyê dewletê ve ku bi xwe emrazek bû di destê Engîzasyonê de, hatine standin, bi vî awayî ku bi hêlana bi tewahî ya zewicînê li qorixa kilîsa û şopandina pirsên cinsî ji rêya yasayên wekî nehêlana telaq wergirtinê ji aliyê jinan ve, danîna cezaya mirinê bo têkiliyên cinsî yên bê zewicînê û sunnetkirina Keçan dest bi tund û tojiyê dijî jinan bi merema standina mafên jinan yên aborî kirin.

Bi taybetî li dehsalên 1900'ê Zayînî, piştî wê ku şerê yekem yê cîhanî di sala 1918'an de bi dawî hat. Zaf ji gelên Ewropayê hinek mînakên demokrasiyê cihgir kirin. Di hin ji wan welatan de jî jin gihîştine mafên xwe. Hinek mînak ji ceribînên ku li pêş de li Niyozlendê (1983), li Austiraliya (1904) û hin ji welatên din jî sergirtibûn.

Piştî vê xebata bi dijî gel serdestiyê û hikûmetên dîktatorî, karîn gelek mafan bidesteve bînin. Bi awayekê ku îro rojê zaf ji welat giringiyê didin wekhevî û azadiya Jin û Mêran. Lê eve di halekê de ye ku rewşa jinan di dirêjahiya vê sedsalê de di gelek ji welatên cîhanê de baştir bûye, lê mixabin li zaf ji welatên Rojhilata Navîn de wekî welatên Erebî ku mînaka berbiçav ya wan Erebistana Siûdî ye, ne tenê wekheviya Jin û Mêran bi fermî nehatiye naskirin, belkî berevajî bi bêşermiyeke zaf ve bi awayekî fermî û yasayî tête ret kirin.

Di wan welatan de ku hikûmetên paremayî desthilatdar in, hikûmetê ne tenê jin ji mafên wekhev bêpar kirine, belkî zulm, stem û ferq û cudahîyên gelek bêrehmane li ser jinan disepîne. Ev hikûmetane di baweriya xwe de jinê wekî miroveke nivîşkan dibîne ku di warê eql û fikrê de miroveke ne kemilî ye, lewre her li ser bingeha wan baweriyên paremayî ye ku li hemû yasa û pirensîpên xwe de ferq û cudahiyên zaf bo jinan didanêt û ji mafên siyasî û heta mirovî jî bêpar kirine. Ev hikûmetên zalim û paremayî her salê çendîn cara ji aliyê kom û komeleyên navneteweyî, Rêxistina mafên mirovan û ji aliyê sazî û binyatên din ve bi binpêkarên mafên mirovan têne mehkûm kirin.

Bi xweşî ve îro rojê di serdemê me de mezintirîn guherîna ku pêk hatiye, guherîn di wijdana mirovahiyê de ye ku hêdî hêdî hişyar bûye û tevî çi xeyal û Hîpnotîzmekê de nakeve xewê de. Mirovên paremayî li dirêjahiya çendîn hezar salan de cîhan bi çaveke girtî dîtine, rewşa jiyanê û qedera xwe her çawan dîtine, bê qise û nerazîbûn qebûl kirine, niha çavê wan vekirî ye û mirov tevî cîhaneke nû berengar e ku birsî, zulmlêkirî, nerihetî û têniyê azadiyê ye.

Di dawiyê de divê ku em bêjin yek ji pirsên ku tevgerên niha yên azadiya jinan divêt jêre xebatê bikin, azadkirina jinan û rohn kirina mafên wan e. Divêt em nîşan bidin



ku di çi welatekê û di çi hevsengiyeke civakî de zalim bi daxwazên xwe dest ji îmtiyazên xwe nakişînin. Divêt em jinan bo meydana xebatê bikêşin ku ev xale renge para herî zehmet ya vê pirsê be, lê divê em wan halî bikin ku wan girngî û pûteya vê xebatê hene.

Armancên bingehîn yên vê serhildanê, peydakirina rênimayiyekê ye ku li ser esla mehnebûn di nava tevgera Mêran de pêdagir bûye û nasnameya taybtî ya vê tevgerê dide tevgerê. Tevgerek ku tê de tevahiya belengazan ji her girûp û desteyekê bo azadiya xwe xebatê dikin û dixwazin vê azadiyê bidestve bînin.

**Jêder:**

**-Gotara, bizava jinan, xwastek û awayên birêxistina wê, bersîvek ji bo ne wekheviya Zayendî. Nivîsandina: Perwane Qasimî**

**-Gotara, derheq çemka dîrokî û civakî ya Tevgera serbixwe a jinan. Nivîsandina: Sîma Rastîn**

**-Gotara, Ez xwe bi Fîmînîst dizanim. Nivîsandina Sîmon Debwar, wergeran: Sîma Rastîn**

**-Pirtûka Mafê mirovan û demokrasî di Rojhilata Navîn de**

**-Gotara, Hestên Windabûyî yên femînîzmê em careke din peyda bikin. Sîma Debwar, wergeran:Asiya Tehranî**

### 115 milyon zarok bê perwerdehî ne



Rêxistina UNICEF'ê ya zarokan a Netewên Yekbûyî di rapora xwe ya ku li ser 180 welatên cîhanê amade kiriye, di roja 18'ê avrêlê de eşkere kir ku di cîhanê de 115 milyon zarok ji perwerdehiyê bêpar in û piraniya van jî zarokên keç in. Bi giştî ev rapore rewşa perwerdehiyê baş nade xuya kirin.

### Mifahwergirtina xirab ya cinsî ji keçên hilatî



Ebas Goldost, civaknas û endamê şanda zanistî ya zanîngeha Tehranê di hevpeyvînek di gel nûçegihanê Sîna de da xuya kirin: Vekolînên kirî li ser keçên hilatî dide eyanê ku 70 ji sedê ya van keçane her roj 1 heta2 caran dikevine ber destdirêjiya cinsî. Herwiha navhatî da xuya kirin ku vekolînên kirî di Îranê de didene eyanê ku her roj 45 keç û xortên ciwan ji malê direvin û dikevine telika band û girûpên xilaf û fisadê.

### 50 Milyon "Siqtê cenîn" di cîhanê de

Serhejmariya Rêxistina Saxlemiya cîhanî dide xuya kirin ku ji 210 Milyon haletên dugiyanî(Awis bûn) ku her sal di asta cîhanî de rû dide, 50 Milyon Siqtê Cenîn têne kirin.
Li gor vê serhejmariyê 30 milyon Siqtê cenîn bi terzeke yasayî û 20 Milyon jî bi awayê ne yasayî têne encam dan. Hejî gotinê ye ku ji vê qasê û di vê navberê de, 7 Hezar jin ku bi awayê nepaqij ev kare encam dane, mirine.

# Kuştina Serleşkerekî Sipaha Pasdaran li Urmiyê

Di roja înê 17.06.2005'an de ango roja hilbijartina Serok Komariya Îranê, serdarekî Sipaha Pasdaran bi navê Malik Ebdulelîzade bi destê çend kes ji hevgundiyên xwe (gundê Lûr Balacûq yan Lura ser bi bajarê Urmiyê ye) dikeve ber destrêjiyê û tê kuştin.

Sedema ev bûyera han ku wekî tolhildanê tê xuya kirin, vedigere bo 19 sal berî niha ku wekî tê gotin di sala 1986'an de Malik Ebdulelîzade di pevçûnekê tevî hevgundiyên xwe, wan dixe ber destrêjiyê û 9 kes ji hevgundiyên xwe yên Kurd dikuje û çend kesên din jî di vê kiryara hov de tên birîndar kirin, ji ber ku wî çaxî navbirî endamê hêza Besîc ya rejîmê bû û qurbaniyên wê bûyerê jî Kurd bûn ev ne tenê nayê girtin û dadgehî kirin, belkî piştî çend salan ji pileya Besîciyê serdikeve û dibe "Serdar"!

Malbatên kuştiyan ku bersîva wan ji aliyê rejîmê ve nehatibû dan, roja înê 17.06.2005'an de dema ku Malik Ebdulelîzade tê gundê Lura, ji bo wê ku ji gundiyan bixwaze dengên xwe bidin Mehmûd Ehmedînejad, dikeve ber destrêjiya çend kesên nenas û tê kuştin. Hêjayî gotinê ye ku piştî vê bûyerê kesek bi navê **Ferdîn** ku babê wî yek ji 9 kuştiyên destê Ebdulelîzade bûye tê girtin ku heyanî niha çi nûçe ji rewş û cihê Ferdîn eyan nebûne.

Hejayî gotinê ye ku xelkê gundê Lûr Balacûq (Lura) ku ji Kurd û Azeriyan pêk tê, ji mêj dem e di biratî û di tenahiyê de dijîn, lê Komara Îslamî piştî hatine ser kara xwe bi pîlan û fitneyên cur bi cur xwestiye ku di cihên ku Kurd u Azerî bi hevra dijîn alozî derkeve holê.
Em ji xelkê Lûr Balaciya dixwazin ku guh nedin pîlanên rejîmê û bi awayekî birayane ji rêya mêrxas û ridînsipiyên xwe ve pirsgirêkên xwe çareser bikin.

### Tûşbûna 10 hezar kesan di Îranê de bi nexoşiya Îdiz



Wezareta Paqijî û Derman a Îranê di serhejmariya dawî ya xwe de hejmara kesên tûşbûyî bi HIV heta Adara 1384'an 10 hezar û 256 kes da zanîn. Herwiha da aşkira kirin ku ji vê qasê 9751 kes mêr û 514 kes jî jin (95 ji 100'ê) pêk tînin.

### 170 milyon zarok di rewşeke pirxeter de dijîn



Radyo Amerîka li gor gotina sindoqa piştgîrî ji zarokên Rêxistina Navneteweyî (Yonîsif) da zanîn: Niha zêdetir ji 170 Milyon zarokên karker di cîhanê de bi hin karan mijûlin ku ew bi xetera madeyên Kîmyayî û karên senetî yên giran û pir xeter re rû bi rû ne. Li gor vê raporê hejmara zarokên ku di serokaniyên kevir û... , di Afrîqa, Asya û Amerîkaya Başûr de kar dikin, jêhel çûye.

### Hişyariya Rêxistiana Efûyê ya Navneteweyî derheq rewşa jin û keçan

Rêxistina Efûyê ya Navneteweyî hişyarî da ku jin û keç goriyên eslî yên tund û tûjiyê di cîhanê de ne. Li gor rapora nûçegihanê Îlna, vê rêxistine di rapora xwe ya salane de tekez li ser rewşa mafê mirov di cîhanê û bi taybet rewşa jinan ragehand.
Zêdebarê mînakên zaf yên tund û tûjiyê û bê hurmetî bi jinan û keçan di cîhanê de hêj tu sizayek ji bo sebebkarên van cinayetane nehatiye diyarî kirin û herwiha goriyên van cinayetane jî di civakên xwe de bi dijwarî jiyanê dikin.

# Li ser pirtûka Helbestên Xilat Ehmed
# Çarîkên Berbangê – Tiryaq

**Cankurd**



**Xilat Ehmed** hozanvaneka kurd e, bi zarê xwe yê şîrîn, bi helbestvanî û pevekdariya xwe ya delal, bi bejn û bala xwe ya kubar, bi nêzmirovî û dilgermiya di hilperk û dîlanê Kurmanciyê da... Lê belê – *mixabin* – ev car kela dilê xwe bi Erebî daye der, bi rengekî siyah, ku tenê ji destê tablokêşekî mezin yê wek **Reşîd Hesso** derdikeve, pirtûkek bi sernavê "**Çarîkên berbangê – Tiryaq**", wek pêleka herifdêr a zireyê avêtiye kenarên dûrwelatiyê.

**Lê bo çi bi Erebî?**

Divê em binêrin, ka ev xanim li kî derê dijî. Li Swîsra, di nav Kurdên, ku piraniya wan bi Kurdî nizanin bixwînin. Kurdên li welatên din jî neçêtirin di têkilya bi zarê Kurdî re. Hozanvan jî, çi hozanvan dibe bila, meraq dike, ku berhemên wî / wê bigihin xwendevanan, lê gava ewan bi zarê dayik û bavan nizanibin bixwînin, êdî hozanvan binzor dibe, qumaşê xwe bi rengekî dî deyne ber wan.

Ji aliyekî dî ve, mixabin! Para Erebî li ba gelek malperên wêjevanî yên Kurdan bêtir e ji para Kurdî. Nivîskar, Hozanvan û rewşenbîrên me xwe di Erebî da hêzdartir, nasbertir û berçavketîtir dibînin.

Ev Selîm borekatkirina wêjevaniya Kurdî dê tevî rêzgirtina me ji hêja **Selîm Berekat** û berhemêd wî yên giranbuha re, wêjevaniya Kurdî tar û mar dike. Ez bi xwe çar-pênc hozanvanan dinasim, ku zimanê wan ê kurdî zelal û xort û fireh e, lê dîsa jî xwe davêjin gola zimanê erebî, xwe tê da digevizînin û avjeniya xwe bi dilxweşî di wir da dikin.

Ez bi xwe gotarên ramyarî bi Erebî dinivîsim, lê berhemên wêjevanî tenê bi Kurdî, ne bi zimanekî dî, dinivîsim. Dibe jî ya min şaş û çewt be, ya van hozanvanan rasttir be. Ez nizanim, lê bila em ji bîr nekin, ku hozanvanê Ereban yê tev mezin **Ehmed Şewqî** Kurd e, hema em nikanin bibêjin, ku berhemên wî Kurdî ne.

Di pirtûka **Xilat Ehmed** da (14) helbest hene, ji wan **Neqşên kevin, Xerîbo lo li bajêrên dûr, Ezê perê xwe bi nazikî jê re verişînim,** û **Çarîkên berbangê - Tiryaq.**

Di van helbestan da dilketinek mezin bo welatekî dûr heye, çavrêkirinek herheyî di çavên koviyek Kurdistanî da dixuye, hezkirin û bihna mêbûnê ji azadiya xweyî re, û di paş her pevekekê da xemek mezin, kulek giran û tirsek ji rabûna perdeyên şermiyê heye, û çavin, ku bi şevan di tenahiyê, tîbûnê, dûrbûnê û belengaziyê da giriyane, veşartîne.

Hozanvana me ya delal bi xwe jî dibêje:"**Hîn di çavê min da şermîna Rojhilat heye...**" Ew çiqas bizava xwe dike, ku bilind bifire, carekê di ser yê berê çûyî re, di ser welatê ji dest çûyî re, di ser rewşa xwe ya nebaş û jîna bêzariyê re, lê her û her basikêd wê dişikin û vedigere razanga evîndariyê, ku ji wir pê va hîç penahgehek jê re tune. Li ciyê hêviyan ew gulên bi xem û hêsiran hatine avdan diçîne, û li ciyê azadiya bêsînor û serhed, tenha maçek ji bîr nebûyî li rawestgehek biyaniyê, di lêdankekdemê da, bo yarê xwe, na..na, bo yara xwe wek diyariyekê di deftera xwe ya hozanan da dinivîse.

Ez bi xwe di ber xwendina van helbestan ra xemgîntir bûm ne dilşadtir, lê dêmê hozanvana delal û ciwan li ser bergê paşînê pirtûkê dilê min hîn bêtir ji va dema seqayê, bêmirovatiyê û bêevîniyê tirsand.

**Vane çend rêzikin, ku min bo we wergerandina Kurdî:**

**"Siya min wê negihe te**
**Di va gerîna dorhevî ya bêdeng û dirêj da**
**Di semaya derwêşan da**
**Di nimêja min a kavilkirî da..."**
**...........................**
**"Li ser milêd min ên bêgunah**
**Gundên bakur û stranên palekaran vedihesin**
**Ji teh'na axê serxweş dibin**
**Bagerînka tozê**
**Di paş koma mezin a kêsê da**
**Dilxwezînê di seriyên tiliyên min da vêdixîne...."**
**..........................**
**"Ezê ji te ne bêtir bim**
**Ezê ji te ne kêmtir bim**
**Ezê çarşefên textê xwe yê xewê biguhêrim**
**... û silaviya dildarêd xwe bikim**
**Bi hemî kanîna xwe ya fêlbaziyê**
**... û vêxistina şemalan li ser pencereyên min ên girtî**
**Ezê çavrê bim, ku tu li deriyê min bidî, xanim...([1])**
**û tu min vexwendiyê evînê bikî...."**

**............................**
**"Şehzadeya min!**
**Ka min hobike,**
**Ez piyê xwe di bayê da bilind bikim**
**Wek pampelîskekê,**
**Basikên xwe dicûmîne,**
**Di dilmestiya mêtinê da**
**Berî ku nêrgiza min bidizin**
**û berî ku xweşbihna min**
**bê min cîlaw bikin.**
**Tu biyaniyî xanim**
**û ez jî bo te biyanî me**
**Ev zevîn bihna min nanase**
**Tijî ye bi efsaneyan**
**Dûr e ji nexçeyên welatan**
**Rûmetdar e ta girînê**
**Ez xwe didim nav dema xwe bê wesek**
**Ez im gula, ku di pirtûkên geryaneran da ziwa dibe.**
**Ez pençek morik dibexşînim dildarêd xwe**
**da herifteyên min gulbidin."**
**..............................**
**Weku – belkî – bê hişê te**
**Ezê sêvê di ber xwe kim ([1])**
**û berê xwe bidim tirênan**
**Çavrêkirin, vê carê, ta şeşan bê hode ye**
**û porê min î dirêj wê ne bes be**
**bo maçek dirêj, di koşek rawestgehê ([1]) da ..."**

[1]) Min peyva (xanim) xist dawiyê, ku mera bizane, ew mê mebest dike.[cankurd]
[1]) Ji xwe re bikim cil [Cankurd]
[1]) Station [Cankurd].

# Hevdîtina min û Cegerxwîn

Temûrê Xelîl



**Sala 1982'an meha Îlonê bû. Wî çaxî ez berpirsiyarê Radyoya Kurdî ya Yêrêvanê bûm. Serokatiya radyoya Ermenîstanê ez şandime Moskvayê bona çend meha Enistîtuya bilindkirina kvalîfîkasyona xebatkarên radyoyê û televîzyonê da bixwînim. Wira ez ji serokê Federasyona komelên Kurdistanê li Swêd Hanefî Çeleplî pê hesiyam, ku bi dewatkirina serokê para Kurdzaniyê ya Enistîtuya Rohilatzaniyê ya Akadêmiya Sovyêtistanê (para Lênîngradê) Qanatê Kurdo ew û helbestvanê mezin-Cegerxwîn zûtirekê wê ji Stockholmê bêne Lênîngradê. Êdî minê li ku û kengê Cegerxwîn bidîta? Ez rabûm û çûm. Min ra li hev hat ji wextê wî yê giranbuha sê seheta "biçopînim". Hevpeyvîna min bi wî ra bi deng hate nivîsar û ew ji min ra bûye wek tiberkekê. Min derheqa berhemên wî da kêm tişt jê pirsî, ji ber ku ewî bi çend dîwanên xwe va di wê hêlê da êdî gelek tişt ji me ra "gotibû". Ji min ra hewaskar bû bizanibim ka Cegerxwîn wek mirov, welatparêz yekî çawan e, yek jî-çika çi berhemên wî yên neçapkirî hene, ew çiqasî haj ji pêşdaçûyîna edebiyat û çanda Kurdên Ermenîstanê heye, ew çawa qîmet dike?**

**Ez rastî wî mirovî hatim, ku derheqa wî da di dema xwe da gotibûn: "Gelê me helbestvanekî wek Cegerxwîn da, ji ber ku Kurdistan hewcê dengekî bilind bû û ew bû ew deng". Berhemên wî da fîlosofiya ("Dara azadiyê bi xwînê tê avdan"), lîrîka-nazikayî ("Qelenê Kurdistanê yekîtî ye"), welatperwarî ("Ev ne dîn e, ev dîntî ye, dîn serxwebûna milet e"), evîndarî ("Kurdistan bûka rû bi xêlî ye") hene.**

**Hevpeyvîna jêrê ji zarê Cegerxwîn çawa derketiye, usa jî min nivîsiye, da ku em agahdarê zimanê wî yê şîrîn û dewlemend bin.**

**Ji kerema xwe behsa jiyana xwe ya ji dayîkbûnê hetanî salên xortaniyê bike?**

Ez sala 1903-a, li Mêrdînê, gundê Hesarê hatime dinyayê. Dê û bavê min karker, cotkar, perîşan û reben bûn. Sala 1918'an bavê min li gundê Amûdê (Cizîrê) çû dilovaniya xwe û diya min salekê piştî wî ra serê xwe danî. Ez perîşan û bindest, carna bal xûşka xwe dimam, carna jî diçûme bal birayê xwe. Û min bi vî rengî çend sal derbas kirin, perîşanî û rebenî dît, lê êdî min hew dikaribû îdare bikim, ji ber vê ez çûme xwendegeha olperestî. Wan çend salên xwendina xwe da min gelek bi xurtî dixwend û gavên xwe pêşda diavêtin. Paşê, gava êdî genc bûm, min sala 1927'an jin anî. Ew keça xalê min bû, ji gundê Hesarê. Neh zarokên min çê bûn, du kur jê mirin, du kur û pênc keç man.

**Derheqa berhemên we da me pirî-hindikî bihîstine, xwendine. Lê ji me ra hewaskar e, ku hûn bi xwe derheqa wan da me ra bêjin.**

Hetanî niha heft dîwanên min derketine. Bilî vana min çend serpêhatî jî nivîsîne, weka "Reşoyê darê", "Cîm û Gulperî", "Medya û Salar". Hinek jî bo çapê amade ne, wek: çar perçe tarîxa Kurd û Kurdistanê, sê perçe tarîxa jîndariya min, perçek folklora Kurdî. Min kitabên Kurdzan Mînorskî, Xalfîn û Nîkîtîn ji Erebî tercumeyî Kurdî kirine. Lê heya vê gavê ronahî ne dîtine. Û niha jî, ku emirê min digihîje 80 sala, ez ji gelek kovar û rojnameyan re dinivîsînim, di civînên xortan û cejnên Newrozê da diaxivim, di şeva da gelê xwe ra dibêjim, ku ber zor û setema dijminê xwe yek bin. Ez hêvîdar im, ku ew yekîtî wê hêdî-hêdî çê be. Anaha pirîskên hêviyê bilind dibin, gelek ciya yekîtiya xwendevanên Kurd çê dibe. Bê guman, yekîtiyeke xurt li Kurdistanê jî pêwîst e.

**Em di zanin, ku gelek berhemên we yên pêşin salên siyî di kovara Kurdî ya delal - "Hewar"ê da çap bûne. Bîr û baweriyên we ser wê kovarê çi ne?**

Kovara "Hewar" ez nikarim bêjim, ku kovara Kurdî ya pêşin e, ku xizmeta mezin ji bo gelê Kurd kiriye. Lê ez dikarim bêjim, ku ew ji wan kovarên hêja ye, ku karekî mezin ji gelê Kurd ra kiriye. Û xwediyê kovarê - Celadet Bedirxan (Xwedê jê xweş be) dihate jimartin wek seydayekî torevan, seydayekî ristevan û xortekî nivîskar û aqilmendê çaxê xwe.

**Hûn cara yekê ye, ku têne Yekîtiya Sovyet, lê we berê jî derheqa hal û demên me, kar û barên me da bihîstiye. Ser vê meselê hûn dikarin raya xwe bêjin?**

Ez bi xwe, şexsiyen, Yekîtiya Sovyet gelekî hez dikim. Ji ber ku doz û daxazên gelê min cara pêşîn li vira pêk hatin. Ez bawer im, ku gelê Kurd jî gerekê dost û heval û dilxwazê Sovyetistanê be. Ji ber ku welatê Sovyet destûr daye rojnama "Rya teze" derxînin û radyo ya Kurdî belavkin. Û em-Kurdên der va jî gelek jê kar dikin. Em hêvî dikin, ku ew gavên, ku Kurdên me di welatê Sovyet da avîtine, hê firehtir û berepêş bavêjin. Birayê me yê

mezin-Sovyetistan, rêzan û rêberê hemû gelê bindest e, hemû cotkar û karkerê cihanê ye. Em dostê Sovyet in û xêrxwezê tevî partiyên cihanê yên pêşverû ne. Em herwiha dost û piştgirê miletên bindest in, yên ku dixwezin xwe ji zor û setema dijminên xwe biparêzin, xwe gerdenazad bikin.

**Hûn ser pêşdaçûyîna Kurdên me çi dikarin bêjin û ew yek li Kurdistanê çawa tê qîmetkirin?**

Em hêvî dikin, ku hûn gavên xwe bêtir pêşda bavêjin, xwe yek ji lawên Sovyetistanê bijmêrin. Eger Kurdistan azad bû, gihîşte doz û daxazên xwe, wê demê pêşketina we wê kêrî me bê. Emê ji Sovyetistanê hêvî bikin, ku çend Kurdên jîr û zana bişîne welatê kal û bava, ku alîkariya me bikin.

**Derheqa gelê Ermeniya da çi dikarin bêjin?**

Em û Ermenî xwe wek birayê hev dibînin. Em du bira ne di Rohilata Navîn da. Tirka, Osmaniya em gelek êşandine, wekî Kurmanc dibêjin: "Em birîndarên şûrekî ne". Ji ber vê derdê me û Ermena yek e. Em û Ermenî emê hela gelek cara kêrî hev bên û divê kêrî hev bên.

**Gelo hûnê carek ji caran bêne Ermenîstanê, mêvaniya me?**



**Qanatê Kurdo Temûrê Xelîl Cegerxwîn**

Welle, ez her gav dixwezim bême Ermenîstanê, ne tenê ji bo ziyaretiya birayên xwe yên Kurd, lê ez herwiha dixwezim Ermenîstanê jî bibînim, rewşa gelê Kurd jî agahdar bim, pêşketina birayên xwe yên Ermenî jî pîroz kim. Hema firsend çê bû, ezê bêm.

**Belkî hûn zanibin jî, li Yekîtiya Sovyet, xwezma li Ermenîstanê, gelek ronakbîr, hunermend û nivîskarên me hene. Hûn ji wana kê nas dikin û çi dixwazin ji wan ra bêjin?**

Hozan û bîrewarên Kurdên Ermenîstanê bal me payebilind in. Me navê wan geleka jê bihîstine, niviştên wan xwendine. Meselen, navê Qanatê Kurdo, Haciyê Cindî, Erebê Şemo li roja, esmana eşkere ye. Rehmeta xudê li bavê te be jî. Ewî dengê Kurdên Sovyet gîhande me. Radyo ya Kurdî bal me pir qîmeta wê heye. Ez hêvî dikim, ku xortên nuh radibin jî, şûna wan bigrin û gavên xwe ji wan bêtir bavêjin.

**Gelo qedera gelê me wê çawa be?**

Gelê Kurd gelekî serbilind e, tora wê ji tora bilind tê jimartin. Kurd ne paşdamayî ye, wek ku dijminên me dibêjin, ku Kurd wehş in, hov in û li serê çiya dimînin. Lê em ne xelqê serê çiya tenê ne. Rast e, hinek milet ev qonax derbaz kirine, me jî ew dewran derbaz kiriye. Eger qonaxa me dirêjtir bûye ji ya Turk û Ereb û Ecem, ne sûc û gunehê me bûye. Wan ne hîştine em bi pêş va herin. Ji hêlekê va zordestî li me kirine, alîkî va jî xwendinê da em tengezar hîştine.

**Gelek spas ji bo vê hevpeyvînê. Em ji we ra jiyaneke dirêj dixwezin û bira qelema we adan be!**

Ez spas dikim ji van gotinên te ra û dawiyê dixwezim bêjim, ku di baweriya min da, wekî ku zanyarî daye xuyakirin-jiyana wî mirovî, ku ji gelê xwe ra bi paqijî kar kiriye, dilpakî xebitiye, bimre jî-sax e, bimre jî-nemirî ye. Weke Soran dibêjin-"nemird e". Tê bîra min, gava hozanê mezin Bêkes miribû, burjwazên Kurdên Kurdistana Îraqê pere li ser tirba wî bela dikirin. Îcar, keçekê rahişte perê wan û qetand û got: "Bêkes sax bû, kesî ji we qirûşek ne dayê, ji birçîna mir. Îro Bêkes miriye, ne muhtacê dînar û berhemên we ye! Bêkes niha di dilê jin û mêran da, xort û keçan da cîkî bilind girtiye û hîç cara namire". Eger ez jî layîq bim, eger ez jî hêja bim wekî Bêkes di dilê gelê xwe da bimînim-ez tim jîndar im, ez bimrim jî, ev hemî hestî û goşt û çerm herin jî, qîmetê wan tune, bira herin, lê ezê di dilê miletê xwe da bimînim.

**Gelek sipas!**

***X X X***

Pey vê hevpeyvînê ra Cegerxwîn daxwaz kir ku ez pêşgotina dîwana wî ya 8'an "Aşîtî" binivîsim. Min nivîsî, lê çi mixabin, ku ew dîwan bi pêşgotina min piştî mirina wî ra ronahî dît.

Eva gelek sal in, ku ez dengê Cegerxwîn, herwaha dengê Qanatê Kurdo jî, ku min rojekê da nivîsî bûn, wek ronaya çava xwedî dikim û her guhdarîkirinê ra xwe serbilind dibînim.

# Yêrîvan xeber dide!

Prof. Celîlê Celîl


Xanîyê Radyoya Yêrêvanê

**“Yêrîvan xeber dide!**
**Hevalên radyoguhdar, em dest bi xeberdanê bi zimanê Kurdî dikin...”**

Pêncî sal e hemû rojê xeberdanê Kurdî ji Yêrîvanê dest bi xeberdanê xwe bi peyvên “**Yêrêvan xeberdide**” dest pê dike. Radyoya pêncî salî di jiyana xwe ya nîv sedsalî da şahidê gelek bûyerên giring bûye, yên ku li dinyayê qewimîne, di jiyana gelê Kurd û Kurdistanê cî girtine.

Di nava van pêncî salan da bi dehan rewşenbîrên Kurd: ahil û cahil bi hev ra pişt bûne û dengê radyoya Kurdî bi xurtî belayî ser hemû parçên Kurdistanê kirine. Her rewşenbîrek bi cudaya dirêjaya salan, ku li radyoyê kar kiriye, gorî karîna xwe, bi armancekê rabûye û rûniştiye: xizmeta çanda gelê xwe bike, barê ku girtiye ser milê xwe, bi serfirazî bi cî bîne. Navê van xebatkaran hêja ye yek bi yek bê bîranîn û ber emeka wane rêtî em bêjin “Spas ji we ra, bona keda helal û welatparêziyê”. Xebatkarên radyoyê bûne: Casimê Celîl, Nûra Egît Polatova, Ordîxanê Celîl, Xelîl Mûradov, Mirazê Evdo, Hamoyê Rizgo, Mîkayîlê Reşîd, Şikoyê Hesen, Emerîkê Serdar, Wezîrê Eşo, Fêrîkê Ûsiv, Sêvaza Evdo, Eznîva Reşîd, Egîtê Cimo, Ehmedê Gogê, Sîma Semend, Nûra Cewarî, Tîtalê Efo, Cemîla Celîl, Bariyê Mehmûd, Keremê Seyad, Hesenê Mehmûd, Gulîzera Casim, Lûsîka Huseyîn, Îşxanê Eslan, Cemalê Ûsiv û yên mayîn. Piraniya van rewşenbîran nek her tenê karkerê radyoya Kurdî bûne, lê belê ewana bi berhemên xwe yên giranbuha li edebyet û zanistiya kurdî ciyê xwe ya hêja girtine. Cewhera radyoya Kurdî ew para stran û awazên Kurdî ye.

Îro di fonda muzîka Kurdî da dora 1500 stranên Kurdî hatine civandin. Dîroka avakirina vê Fonda zêrîn taybetî ye. **Navê gelek muzîkkar û hunermendan** bi vê fondê va girêdayî ye, yên di nava gel da pir naskirî û hizkirî ne: Efoyê Esed, Şeroyê Biro, Karapêtê Xaço, Memoyê Silo, Mecîtê Silêman, Aramê Tîgran, Egîtê Têcir, Sûsîka Simo, Mihmedê Mûsa, Ehmedê Mîrazî, Gulîzera Etar, Aslîka Qadir, Zadîna Şekir, Belga Qado, Kubara Xudo; ji muzîkara Şamilê Beko, Egîtê Cimo, Wezîrê Ûsiv, Xelîlê Evdile, Taharê Emer û yên mayîn. Radyo, bi seya keda van dotên Kurda û camêrên ronakbîr û hunermend, di nava van pêncî salên derbasbûyî da bûye xwayê nav û deng, dewra xwe ya hêja di xwehesîn û xwenasîna gelê Kurd da lîstî ye.

Zanyar û rewşenbîrên Kurd û ne Kurd nivîsar, lêkolînên xwe li ser Kurdan ji bona weşandinê di radyoya Kurdî de dişandin. Ser pirsên dîrokê, ziman û êtnografiyayê, edebyet û folklora Kurdan bi radyoyê va, Qanatê Kurdo, Heciyê Cindî, Rûdênko M.B, Emînê Evdal, Ordîxanê Celîl, Karlênê Çaçanî, Celîlê Celîl, Şekroyê Mihoyî, Şerefê Eşir û yên mayîn bi nivîsarên balkêş va pêşda dihatin. Navê radyoya Kurdî awqas bi deng bû, ku di sala 1957'an de Prof. Mînoriskî ji Londonê miqalekî taybetî bi zimanê Kurdî bi navê “**Mîdî pêş bavê Kurdan e**” ji Qanatê Kurdo ra şandibû, wekî ew bişîne radyoya Yêrîvanê ra.

Gava xeberdan dive ser radyoya Kurdî, nabe ku bê spasdariya mezin nayê bîr anîn, keda axaftarê emekdirêj û şuretpir Keremê Seyad. Ew yek ji wan karmendên radyoyê yên kêm hijmar e, ku jiyana xwe bi giştî diyarî radyoya Kurdî kiriye. Dengê wî dehan salan rewşa radyoyê ya bi şewq bûye. Têkstên wî dixwend him bi Kurdî bûn, him baş dihatin guhdar kirin û him jî merîfeta rîtorîkayê, fena axaftinê pê ra hebû. Xizmeteke wî ya hêja yek jî ew e, ku piştî hilweşîna Yekîtîya Soviyetê, di rojên dijwar û teng da, wî xwe da ber, ku radyoya Kurdî jiyandar bimîne.

Dewra axaftara bona radyoyê û televîzyonê pir giring e. Bona ku radyoguhdar navaroka tekstên ku têne xwendinê baş serwext be, bandora hostatiya xwendinê, rast teqlandina ziman û zelaliya fonêtîkayê gelekî giring in. Îro navên hemû axafter-spîkêrên radyoya Kurdî divê bên ser zar. Ji axaftara, dota Kurda ya pêşîn – ew xanim Nûra Egît Polatova bû, paşê Eznîva Reşîd, Sêvaza Evdo, Gulîzera Casim, Lûsîka Huseyîn, ji mêra Ordîxanê Celîl, Keremê Seyad û yên mayîn.

Berpirsiyarê radyoyê bûne Casimê Celîl, Xelîl Mûradov, Ehmedê Gogê û niha jî Keremê Seyad e. Pêncî sal, nîvê sedsalîkê ji bona jiyana radyoya Kurdî li Yêrîvanê demeke dûvdirêj e. Radyo ji roja bingehgirtina xwe, bi taybetî li salên pêşîn rastî gelek dijwarîyan hatiye, lê bi serfirazî ser wan astangan derbas bûye. Astang bi du awayî bûne: astengên taybetî û astengên ku ji rawşa sîstema Soviyetê peyda dibûn. Cewhera radyoya Kurdî ew fonda wî ya zêrîn e ya stran û awaza, ku ji 1500 nava pêk tê. Bingeha vê fondê ji roja pêşîn, ji dema vebûna axaftinên bi zimanê Kurdî, 1'ê yanvarê sala 1955'an, hatiye danîn.

Gava axaftin ser dîroka civandin û

qeydkirina van stranan tê kirin, her neferekî mala me, mala Casimê Celîl, bê hayecan nikare rex vê pirsê derbas be, ji ber ku ew kar bi hemû tamarên xwe ve bi dirêjahiya 50 salan bi navbiriya çar sala (1963-1967) bi jiyana mala me ve hatiye girêdan. Çima? Ji ber ku neh salan bavê min Casimê Celîl wek berpirsiyarê radyoya Kurdî (1955 – 1958) û paşê wek serokê beşa muzîkayê (1958-1963), barê amadekirina muzîkara û dengnivîsandina stran û awazan girtibû ser milê xwe û pirobayê van muzîkara di mala me da derbas dikir. Heger ji gunda mirovek, dudu, sisê, çar hatibana Yêrîvanê, bin banê mala me da şevek, dudu diman. Peywandiyê me endamên malê bi wana ra çê dibû, me ji wana zargotina Kurdî dinivîsî. Belkî ev yeka jî bûye sedemek, ku paşwextiyê em herçar zaro jî me jiyana xwe bi zargotin û muzîka Kurdî ve girêda. Xemxuriya bavê min ber van muzîkara, ku zanîna wan hemû bê dengnivîsarê, bi his û kela mezin şerkariya wî tevî hevalên xwe yên Ermenî bona xwedîderketin û parastina kelepûra kal û bavan, şopekî mezin hîştrine ser bîr û baweriya me.

Mixabin di wê demê hebûn merî ji me Kurdan, ku dixwestin kursiya



**Casimê Celîl. Bingehdarê radyo ya kurdî. Sala 1958**

serokê radyoya Kurdî bigrin destê xwe, ji ber wê bi dexesî dehan nama yên şikayetê ji KGB, Serokê Partiya Komûnîst ya Ermenistanê, Serokatiya radyoyê ya giştî ra dinivîsîn, ava zelal şêlû dikirin. Car jî dibûn, ku kevir davêtin stranên me, dinivîsîn, guva hinek ji wana strana ser axa û began in, ser dijminê sinifê xebetkaran e, yan jî digotin bi radyoyê pesnê kolxozê nayên dayîn, besa çêlekdoşa nayê kirin... û hw. Evîna mezin ber çanda gelê xwe (Casimê Celîl bi xwe distra, bilûrê dixist), ew astengên ber perdê û pişt perdê, hêza karkirina wî kêm nedikirin. Her tenê di nava wan neh salên, ku wî di radyoyê de kar kir, bi destê wî 700 stran û awazên Kurdî hatine dengnivîsandin. Piştî Casimê Celîl, Dewrêşê Efo (2 sala), Nûra Cewarî (2 sala) bûne redaktorê para muzîka Kurdî, paşê ji sala 1967'a Cemîla Celîl karê bavê xwe heta sala 2003'an berdewam kir

Hilweşîna Soviyetê bona çaranûsa Kurdên Soviyetê xirab geriya. Ji hemûyan bêtir rewşenbîrên Kurd perîşan bûn, bê sitar û bê piştgir man. Radyoya Kurdî jî mîna Ocaxên kulturayê mayîn zeyîf û ji hev ketî bû. Ji sheet nîvekê dema wî kurt bû, gihîşte nîv sehetî, nîv sehetê dinê jî dane dengê Êzdîyan. Hêza pêlweşînê (mocê) kêm bû, niha ew deng nagihîje hemû parê Kurdistanê. Radyoya Kurdî zêndî ye. Dengê wî niha ser şirîtan û kasêta di nava gel de digere. Hurmet û rêz ji hemû kedkarên radyoya Kurdî re, navê kê me hilda û yê kê jî me bîr kir, bila biborin.




**Asoyî:**
1- Têkeliyek ji av û sîmana xalis- Kevanek ku çend tîran bi hevra dihavêje
2- Şorişvanekî Çînî- Mam- Ez zarok bûm
3- Kêm di Turkî de- Di avakirina xanyan de tê bikar anîn- Rûbarek e li devera Badînan
4- Ew giyayê ku bo mirovê rewanî baş e
5- Navek e- Were
6- Jin di xemlandina xwe de bikar tînin- Kurtiya navê saziyeke dijberî hikûmeta Spanyayê ye
7- Pêşdîtina falgir
8- Elem- Rêvîng- Nîşana heyrîmanê ye
9- Derew- Temen- Reş û sipî têkel
10- Navek e- Darek e

**Sitonî:**
1- Hewar û feryad- Ne bi cî
2- Nepenî- Di Erebî de zaf bi kar têt- Bê hewsele
3- Li pey- Bijar- Bo
4- Arîkar
5- Ala- Sernişîv
6- Mirovê sadiq- Dêm nine
7- Siyaseteke nifşperwerane
8- Her- Xwarinek e- Belê
9- Balindeyek e- Bîr- Koçer
10- Hembêz- Partiya Hîtlêr



agiri

Rojnameyeke mehane ya siyasî û çandî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php

Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
E - Mail:
rojnama_agiri@yahoo.com
agiri2003@hotmail.com

# Bîranîna Helbestvanê Kurd Şamî Kirmaşanî

Bo rêzgirtin ji yad û bîranîna Helbestvan û wêjevanê Kurd yê Kirmaşanê, Şamî Kirmaşanî qirar e ku di meha yekem ya payîza îsal de rê û resmek li bajarê Kirmaşanê bihê lidarxistin. Nasîn û nasandina helbest û rêzgirtin ji kesayetiya wêjeyî ya wî Helbestvanê Kurd wekî armancên civînê hatine îlan kirin.



Navê wî Helbestvanê Kurd, "Şah Murad Muştaq" naskirî bi Şamî Kirmaşanî ye.

Şamî Kirmaşanî sala 1302 û hinek jêder jî dibêjin ku di sala 1300 (1921)'an li Hirsînê hatiye dinyayê û li Kirmaşanê jîn borandiye û li wir jî çûye ber dilovaniya xwe.

Navenda Çandî ya HAWARê (rêxistineke ne dewletî) dê vê rê û resmê pêk bîne.

# Destpêbûna weşana Zagros TV




Televîzyona Kurdî ya Zagros ku bi awayeke herêmî weşana xwe li Kurdistanê dikir, dest bi weşana bernameyên xwe li ser heyva destçêkirî (satalayt) kir.
Welatiyên Kurd dikarin ji rêya wan navnîşanên jêrîn weşanên Zagros TV temaşa bikin:
**Eutelsat, sesat 36°**
**Freq. 12625**
**SR. 2667**
**Pol. Vertical**
Qirar e di pêşerojeke nêzîk de weşanên Zagros TV li ser meha destçêkirî (Satalayt) ya HOTBIRD'ê jî bihêne belav kirin.

# Li Serdeştê şeqamek bi navê HÎROŞÎMA tê kirin

Li gorî rapora Heftenameya Sîrwanê, di 18'mîn salvegera kîmyabarankirina bajarê Serdeştê, roja sêşemiyê 28.06.2005'an şeqamek li Serdeştê bi navê **HÎROŞÎMA** hate kirin.

Şandeke welatê Japonê ji bajarên Nakazakî û Hîroşîmayê bi merema beşdarîkirin di vê rê û resmê de hatibûne Serdeştê.
Hêjayî gotinê ye ku di 7'ê Pûşpera sala 1366 (1986)'an bajarê Serdeştê



hate kîmyabaran kirin.
Di encama vê bûyera hovane de heta niha 111 kes hatine kuştin û pêtir ji 6000 kes jî birîndar û siqet bûne.

# Pêşwazînekirina xelkê bajarên Kurdistanê ji hilbijartinên Serok Komarî ya Îranê



Gelê Kurd li Kurdistana Îranê li hemû bajaran roja înê, 27ê Cozerdanê (17.06.2005) ku roja hilbijartian Serok Komariya Îslamî li Îranê bû, neçûne ser sindoqên dengdanê. Xelkê Kurd bi neçûn bo ser sindoqên dengdanê nerazîbûna xwe li hember siyasetên Komara Îslamî dubare kirin.

Li hemû bajarên Kurdistana Îranê wekî Urmiye, Sine, Kirmaşan, Îlam, Mehabad, Bokan, Merîwan, Seqiz, Sewlava, Bane û bajarên din yên Kurdistanê cihên sindoqên dengdanê vala û betal bûn. Piraniya ew kêm kesên ku deng didan, alîgirên berbijaran bûn ku heyamê çand rojên berî hilbijartinê mijûlê propagandayê bûn.

Piştî hejmartina dengan, çi yek ji berbijaran nekarî dengê piranî bidestve bîne û bibe Serok Komar. Lewra hilbijartin bo dewra duyem dom kir. Di wê rojê jî ku roja îna çûyî(24.06.2005) bû, her wekî dewra yekem, xelkê Kurd beşdarî di hilbijartina Serok Komariyê de nekirin û baykot kirin.

Bi raya xelkê Îranê û nemaze gelê Kurd, hilbijartin di Komara Îslamî de tu wateyek nine û di çarçoveya Komara Îslamê ya Îranê de azadî û demokrasî bo wan bidestve nahê.